| | | | |
|---|---|---|---|
| sālār (salar) | salar [e.k.] | dirigeant, maître | leader, master |
| sāmān (saman) | saman [e.k] (=tehemul] | limite, frontière | limit, boundary |
| sar (ser) | ser | tête; sommet, cime, fin, commencement | head; top, summit; end, beginning |
| sarāsar (seraser) | seraser, seranser | du début à la fin, d'un bout à l'autre | from end to end |
| sargēn sergên) | sergîn | bouse, fumier | dung, manure |
| sarw (serw) | serw, selw, selwî | cyprès | cypress |
| saxt (sext) | sext | fort, dur ; sévère(ment), très | strong, hard, severe(ly); very |
| saxtag [N:saxtiyān] (sexteg /sextiyan) | sextiyan | maroquin | morocco leather |
| sāyag [N: sāya] (sayeg / saye) | sî, saye | ombre | shade, shadow |
| sēzdah (sêzdeh) | sêzdeh | treize | thirteen |
| sīh [N: sī] (sîh / sî) | sih, sî | trente | thirty |
| spās [N:sipās] (spas / sipas) | spas | service, gratitude, remerciement | service, gratitude, thanks |
| spās-dār (spasdar) | spasdar | reconnaissant | grateful, thankful |
| srōd [N: surōd (srood / surood) | srûd | chant, chanson | song |
| stūn(ag) [N: stūn] (stûn (eg)) | stûn | colonne, pilier, mât | column, pillar, mast |
| sūd (sûd) | sûd | usage, emploi, profit,avantage | use, profit, advantage |
| sust (sust) | sist | lâche, insolent, mou, paresseux | slack, lazy |
| **Ş** | | | |
| ∂ād (şad) | şa, şad | heureux, joyeux | happy, joyful |
| ∂āh (şah) | şah | roi | king |
| ∂ahr (şehr) | şehr, şar, bajar | pays, ville | country, city |
| ∂arm (şerm) | şerm | honte | shame |
| ∂a∂ (şeş) | şeş | six | six |
| ∂āzdah [N: ∂ānzdah] (şazdeh/şanzdeh) | şazdeh, şanzdeh | seize | sixteen |
| ∂ēwan (şêwen) | şîn, şîwen | se lamenter | lament |
| ∂iftālūg [N: ∂aftālū] (şiftalûg / şeftalû) | şeftalû | pêche | peach |
| ∂īr (şîr) | şîr | lait | milk |
| ∂īrēn [N: ∂īrīn] (şîrên / şîrîn) | şîrîn | doux, sucré | sweet |
| **T** | | | |
| tā (ta) | ta, heta | de manière à, jusqu'à | until; so that |
| tambūr (tembûr) | tembûr | cithare, luth | cither, lute |
| tan (ten) | ten, beden | personne | nobody, person |
| tan-drust (tendrust) | tendrust | sain, entier | healthy, whole |
| tang (teng) | teng | étroit, serré | narrow, tight |
| tanuk (tenuk) | tenik | mince, superficiel | thin, shallow |
| tanûr (tenûr) | tenûr, tendûr | four | oven |
| tarr (terr) | terr | humide, frais | moist, fresh |
| ta∂t (teşt) | teşt | bol | bowl |
| taxt (text) | text | trône | throne |
| **U** | | | |
| ummēd (ummêd) | umîd | espoir | hope |
| ummēdwār (ummêdwar) | umîdwar | plein d'espoir, prometteur | hopeful |

## W

| | | | |
|---|---|---|---|
| warz [N: barz] (werz / berz) | werz | travail, labeur, agriculture | work, agriculture |
| wāy (way) | way ! | malheur ! | woe ! |

## X

| | | | |
|---|---|---|---|
| xāk (xak) | xak | terre, poussière | earth, dust |
| xām (xam) | xam, xav | cru, brut | crude, raw |
| xān (xan) | xan, xanî | maison | house |
| xēm (xêm) | xîm, hîm | nature, caractère | nature, character |
| xēəm [N: xiəm] (xêşm / xişm) | xişm | colère, courroux | anger, the demon Wrath |
| xōg [N: xōy] (xoog / xooy) | xû, xûy, xwî | nature, caractère | nature, character, disposition |
| xwah (xweh) | xweh, xwişk | soeur | sister |

## Y

| | | | |
|---|---|---|---|
| yak (yek) | yek, êk | un(e) | one |
| yāzdah (yazdeh) | yazdeh, yanzdeh | onze | eleven |

## Z

| | | | |
|---|---|---|---|
| zamān (zeman) | zeman | temps, heure | time, hour |
| zanjīr [P: zyncyhr] (zencîr / zwîncihr) | zencîr, zincîr | chaîne | chain |
| zayt (zeyt) | zeyt (≈) | olive | olive |
| zēn [Nû: zīn] (zên / zîn) | zîn | selle | saddle |
| zēndān [Nû: zindān] (zêndan/zindan) | zîndan | prison | prison |
| zēnhār [N: zinhār] (zênhar/zinhar) | zinhar | protection | protection |
| zīrak (zîrek) | zîrek, jîr | sage, intelligent | wise, clever |
| ziət (zişt) | zişt | haineux, laid | hateful, ugly |
| zōr (zoor) | zor | pouvoir, force | power, strength |
| zyān [Nû: ziyan (zyan / ziyan) | ziyan | perte, dommage | loss, harm, damage |

---

ŞANEK :

| | |
|---|---|
| [ ≈ ] | maneya gotinê ya kurmancî bi ya îngîlîzî re têkildar e, lê ne wek hev e. |
| [ ≠ ] | maneya gotinê ya kurmancî an bi ya îngîlîzî re dijmane ye an jî lê nanihêre. |
| [ ∫ ] | maneya gotinê ya kurmancî an bi ya pehlewî re dijmane ye an jî lê nanihêre |
| [ e.k. ] | di edebiyata klasîk de. |
| [ N ] | Farisiya Nû |
| [ Er. ] | Erebî |
| [ P ] | Parthî |

# DEVOKÊ HEKARÎYA

Rojan HAZIM

Devokê Hekarîya cihekî girîng û taybetî heye di dîyalekta kurmancî da... Ji ber vê çendê ye ku me li ser vi devoki dest bi lêkolîneke dirêj û fireh kir û ev karê me dom dike. Lê belê, li vê derê; ji bo xebata «*Kurmancî*» (Rojnameya taybetî ya Enstîtuya Kurdî ya Parîsê, li ser pirsên zaravê kurmancî), em dê di gel hinek nimûneyan û bi kurtî li ser vê çendê bisekinin...

## Coxrafya devokê Hekarîya

Ev devoke li aqarekî mezin û fireh têtê axivtin. Ji bilî êl- eşîrên xwecih yên navça Hekarîya, bireke mezine van eşîran belavî aqarekî firehe dorberê Hekarîya jî bûne. Di bingeh da devokek jî be, lê herweha li gorî êl - eşîran gelek nuansên devokî jî peyda bûne. Nuansên sereke di devokê Hekarîya da ; Ertoşîyanî, Pinyanişî, ∑emdînanî, Oremarî, ∑ikakî, Elbakî, Amêdîyanî û Goyanî ne. Helbet ev nuanse jî di nav xwe de xwedî nuans in... Ji navça Gever, Mirgever û Tirgever bigrin heta alîyê ∑emdîna hindek êl-eşîrên wekî Dirî, Herkî, Gerdî, Begzade û Doskîya jî di nav devokê Hekarîya da nuansên bi serê xwe ne... Lê belê, di nav van nuansa da ji alîyê bi lêvkirinê ve Goyanî taybetîyeke xweser heye. Di gel taybetîya xwe; ji ber ku eşîra Goya li ser tixûbê Hekarî û Botan bi cih in, di bin tesîra devokê Botan da jî maye.

Ev nuansên devokê Hekarîya; ji Westan, Elbak, Qesrik, Şax û Miksa Wanê bigre heta pişta Silopî û li alîyê rojhilatê jî heta nêzîki Urmîye û pişta Şnoyê, li başûr jî; ji Kahnîmasî û gelîyê Berwarê, Amêdîyê û heta pişta Dihok û Zaxo têne axivtin... Helbet navenda vi devoki Colemêrg, Elkî, ∑ax, Elbak, Gever, ∑emdînan, Çel, û heta dereceyekê jî Qilaba ye...

Lê belê, serûkahnîya devokê Hekarîya Colemerg û Elkî ye... Navçên dî jî li dor vê kanê fireh dibin...

Helbet îro demografîya Hekarîya jî gelek hatîye guhartin. Bûyerên aborî, civakî, polîtîk û leşkerî bûyne sebebê koç û bareke navînî û derveyî... Gelek êl-eşîra, cih û warên bab û kalên xwe berdane û bar kirine çûyne cihên dî...

Nêzîkî nîv milonê kes di vê cografya fireh da bi vi devoki daxivin.

## Devokê Hekarîya di alfabê da

Di alfaba ku Bedir Xanîyan danî da û bilêvkirina Hekarîya da nuansek heye: Dengê **û** wekî **ü** ya tirkî têt... Di axivtinê de şûna ku bêjin «**hûn**» dibêjin «**hün**»... Lê belê ev nuanse jî di timamî Hekarîya da bi kar nayêt. Li hind cihên Hekarîya herwekî «**hûn**» têtê gotin... Wekî me di serî da gotî; di devokê Hekarîya da jî hindek nuans hene...

Çend mînakên dî: **bûn** dibe **bün** / **kûr** dibe **kür** / **dûr** dibe **dür** / **bûk** dibe **bük**... Ev bilêvkirine li Behdîna û Botan jî wisa ye: Carina li hersê navçan «**û**» dibe «**î**». Wekî **bûn**/**bîn**, **dûr**/**dîr**, **kûr**/**kîr**, **bûk**/**bîk**... (bi taybetî li hêla Amêdîyê).

Dengê «**r**» bi taybetî di nîveka Colemêrgê û çarçoveyeke teng da nayê ber guh. Şûna dengê «**r**» dengê «**y**» derdikeve... («**herê**» dibe «**heyê**»). Lê belê, heke «**r**» di serê bêjeyê da be herwekî dengê xwe têtê bi lêv kirin. Tenê di nîvek û dawîya bêjeyê da dibe «**y**».

Dengê «**h**» jî di devokê Hekarîya da ji devokên dî zêdetir bi kar têt: **herê**/**erê**, **rih**/**rî**, **bêhn**/**bîn**, **têhnî**/**tî**, **mih**/**mî**, **bahr**/**par**, **xwahr**/**xwar**, **pahtin**/**patin**, **kahnî**/**kanî**, **rêhl**/**rêl**, **heyv**/**hîv**, **sihwane**/**sîwane**, **mêhvan**/**mêvan** û gelekên din.

## Ji alîyê gramerê ve devokê Hekarîya

Devokê Hekarîya ji alîyê qayde û formên gramatîkî ve hindek taybetîyên xweser hene... Lê belê, ev cûdahîye ne bingehîn in, formel in. Wekî dî ev devoke bi timamî li gorî çarçova gramera ku Bedir Xanîyan danî bi kar têt...

Nuansên ku ji devokên dî cûda têne gotin formên piranî, çend daçek û lêker in.

Mînak: «Gundî**yêt** Hekarîya, dar**a** ji rêhl**ed** dûr tînin». Ev hevoke li gorî forma piranîya ku Bedir Xanîya danî divê ku wisa be: ««Gundîy**ên** Hekarîyan, dar**an** ji rêhl**en** dûr tînin». Ev forme digel Hekarîya li Behdîna, Botan û li nav hin Kurdên Qafqasyayê jî bi kar têt... «Ji kerb**êt** wi ew hingizî...» — «Ji kerb**ên** wî ew hingizî»...

Forma nêr û mê jî di devokê Hekarîya da cûdahîyek heye: Bo yekanî **ê**, **a** û bo piranî jî **ên** û **an** bi kar tên. Lê belê, di gel van forma bo cinsên nêr û mê, «**ê**» jî bi hev ra bi kar têt...Helbet di halê nexûyayî da ev forme tête dîtin...

Mînak: «Em bi rê ve rastî gundiyek**ê** hatin...». Li vê derê cins nexûya ye. Dibe ku ew gundî mêr an jî jin be... Lê belê, li gorî gramera Bedir Xanîyan divê heke ew gundî mêr be wekî «gundiyekî» bi kar bêt. Heke jin be, dibe «gundiyekê»...

Ev forma ku ji bo herdu cinsan di devokê Hekarîya de wekî «**ê**» bi kar têt, di halê nexûyayî de formeke rast e... Ji ber ku ev form ji bo cinsê mêr î nexûyayi jî bi kar têt. Mînak: «Ez bi rê ve rastî mêrikek**ê** hatim, min nas nekir»... Dema ji bo cinsê mê jî be wisa têtê gotin: «Ez rastî jinek**ê** hatim...».

Dema halê xûyayi bi kar têt heke xasyetek (rengdêr) bi dûv ra gotin; du form bi kar tên:

1°«Ez rastî mêrikek**î** reşesmer hatim...» An jî «Ez rastî jinek**e** delal hatim...».

2° Hesp**ê** boz, nan**ê** hişk, goşt**ê** sor...

Heke nav li dûv nav bêt:

Hespê Soro, nanê tenûrê, goştê golikan... Heke pronov li dûv nav bêt: Hespê min, nanê te, goştê wi... Heke cins û hal xûyayî be, ji bo mêr şuna «**î**», «**i**» bi kar têt...

Mînak: «Ez çûm aş**i**», «Kê got ? W**i** morov**i** got», «Nanê şivan**i**»...
Ne ku aş**î**, morov**î**, şivan**î**... Lê belê heke di halê xûyayî û yekanî da be «**î**» bi kar têt.

Mînak: Hespek**î** boz, darek**î** stûr...

Ji bo cinsê mê: Mahînek**e** kihêl, şevek**e** sar, darek**e** mezin... Ne ku mahînek**a**, şevek**a**, an jî darek**a**...

Li vê derê divê bête gotin ku; «**i**» an jî «**î**» di devokê Hekarîya da, herweha forma tewandinê ye. Di hin devoka da ev forma deklinasyonê wekî «**ê**» bi kar têt.

Mînak: **aş** dibe **êş**, **xanî** / **xênî**, **ziman** / **zimên**... Lê belê di devokê Hekarîya da ev nimûne wisa dibin: **aşi**/**aşî**, **xanîyî** wek xwe dimîne, **zimani**/**zimanî**... Heke di hevokekê da bête gotin: «Ez çûm **êş**» di devokê Hekarîya da dibe: «Ez çûm **aşi** / **aşî**...».
Dîsa di forma piranî da gelek cara şûna an tenê a bi kar têt.

Mînak: «Min refeke kew**a** dit»... Ne ku «kew**an**»...
Binav kirina forma nêr û mê di hindek cinsên heywana da jî li Hekarîya cûda tête gotin. Wekî: **mêkew** ne kewa mê, **maker** ne kera mê, **mahîn** ne hespa mê...
Li alîyê dî; gelek bêje li Hakarîya nêr in lê li alîyên dî wekî mê bi kar tên...

Mînak: qelem**ê** min / ne qelem**a** min... Anjî devok**ê** Hekarîya / ne devok**a** Hekarîya...

Paşpirtika **-ina** jî li Hekarîya bi kar nayê... Şûna ku bêjin «Ez hespin**a** dibînim», «ez **hinek** an jî **hindek** / **çendek** hespan dibînim» têt gotin...

## Daçek

Di devokê Hekariya da bi kar anîna daçekan jî piçeke cûda ye. Mînak: Heke daçeka pêşiyê «**ji**» be daçeka paşîyê dibe «**ra**» û «**ve**»... Wekî «**ji wi** / **te ra**» û «**ji îro pê ve**»... Heke daçeka pêşiyê «**di**» be daçeka paşîyê dibe «**da**»... Wekî «**di** nav gund **da**»...
Ne ku «**ji wî** / **te re**», «**di** nav gund **de**»...

Hin mînakên dî; **pêk ve**, **vêk ra**, **jê ra**, **tê da**, **pê ra**... Ne ku; **vêk re**, **jê re**, **tê de**, **pê re**...

## Hejmartin

Di hejmartinê da li şûna «**yek**» «**êk**», li şûna «**dido**» «**du**», li şûna «**sisê**» «**sê**» li şûna «**sî**» «**sih**», li şûna «**not**» jî «**nehwêt**» têt gotin... Hejmarên di, kêm zêde wekî devokên dî têne gotin...

## Hindek bêje û navên taybetî

Li Hekarîya şûna ku bêjin: «were **cem** min», «were **nik** min» têt gotin. Nimûnên dî jî wisa... **nik** / cem, **şibî** / nola; mîna, **dûv** / pey, we, wa, hosa, wesa, **weto** / welê, wilo, wisa, **çiku** / çunkî, **pitir** / bêtir, pirtir, **gelek** / pir, **evro** / îro, **duhî** / diho, duh..
**lebê** / çi, **belê** / erê, arê, **an** / yan, **heke** / eger, **harîkar** / arîkar, alîkar, **rûs** / tazî, **tezî** / sar, **ter** / şil.

Ji bo «**bav**» «**bab**», ji bo «**dê**» jî, «**da**, **dadê**, **dayê**, **dîyê**» têt gotin...

Poz di devokê Hekarîya da mana «**qûnê**» dide. Lê belê bêjeya hevmana **bêvil** an jî pozê **kepî** an jî **difin** e...

## Partîkel

Şûna «**ê**», «**a**», **ên** / **yê**, **ya** û **yên** bi kar tên... Mînak: **yê** mayî, **ya** revî, **yên** girtî...

## Pronav

Bi giştî ji alîyê bingehîn ve, di devokê Hekarya da pronav nayên guhartin:
1° ez, tu ew em, hun ew.
2° min, te, wî / wê, me, we (hewe), wan...

Lê belê, di grûba duwemîn ya pronavan da; kesê yekemînê yekanî şûna «min» «mi» têt gotin... Yê sêyemîn ji bo nêr jî; «**wî**» di devokê Hekarîya da dibe «**wi**»... Mînak: Ez wi dibînim... «Ez li hespi siwar bûm»... Şûna «**wan**» jî «**ewan**» bi kar têt gelek caran... Şûna «**wan got**» «**ewan got**» têt gotin... Lê belê, ev pronavên sêyemîn, nêr û mê bi hev a «**wî**» û «**wê**» di axivtinê da dîsa form diguhurin. Mînak: şûna «**wî got**», «**ewi got**» an jî «**ewê got**» têt gotin...

Li alîyê dî, pronavê «**we**» jî li hêla Hekarîya wekî «**hewe**» bi kar têt. Lê belê, ev forme taybetî li şûna pronavê qedir girtinê bi kar têt ku di hindek zimanên evrûpîyan da jî ev forme heye.

Di rêzgirtinê da şûna «**we**» hem di yekanî hem jî di piranî da «**hewe**» têt gotin... Ev forme ji ber siyanet û qedir girtinê wisa bi kar têt...

Şûna ku bêjin «**we got**» dibêjin «**hewe got**»... Li hin alîyên Hekarîya wekî Şemdîna, şûna «**we** - **Hewe**», «**hingû**» anjî «**hingo**» jî dibêjin...
Pronavê refleksî «**xwe**», li hind cihên Hekarîya wekî «**xo**» bi kar têt. Lê bi piranî dîsa wekî «**xwe**» têt gotin...

## Lêker

Di hevmanayî, bilêvkirin û kêşana hindek lêkeran da formeke taybetî heye di devokê Hekarîya da.
Mînak: Şûna «**anîn**», «**înan**» têt gotin. Nimûnên dî jî herwisa...
**dadan** / veniştin, **sotin** / şewitîn, **axiftin** / peyivîn, **alîstin** / alastin, **hinartin** / şandin, **şkandin** / şkênandin, **hisûn** / sûn, **hinûn** / dûn, **pejinandin** / kezixandin, **bişavtin** / bivaştin, **nivisti**/ razan, **jenîn** / jentin, **malîn** / maliştin, **hêlan** / hiştin, **terikîn** / zayîna kitik (pisîk) û seyan, **hûbûn** / hînbûn...

Di kêşana lêkeran li halê «xwezî»yê da jî formeke xweser bi kar têt:
Ez **mabame** / bimama

Ez **çûbame** / biçiwama
Ez **bame** / biwama
Ez **hebame** / hebiwama

Şûna «**ez biketima**», «**ez ketibam**» tête gotin...
Lezgîn dê **ketiba** / biketa, dê **bezîba** / bibezîya, **ew dê ketiba** / wê biketa...
Di kêşana lêkeran da, bi hevkarîya daçeka «**bi**» formên nû çêdibin. Ji ber vê çendê; bi hevkarîya daçeka «**bi**» lêkera «**bûn**» formên cûda werdigre... Lewma, şûna «**bû bûm**» di devokê Hekarîya da «**bibûm**» tête gotin.

Ez **bibûm** / bû bûm
Tu **bibûyî** / bû bûyî
Ew **bibû** / bû bû
Em **bibûn** / bû bûn
Hûn **bibûn** / bû bûn
Ew **bibûn** / bû bûn

(Di demên grûba duyemîna lêkara «**bûn**» da).
Çend formên guhartî yên lêkera: Mînak; «**bikim**» wekî «**bikem**» tête gotin: Nimûnên dî jî herwisa...
**biket** / bike
**naket** / nake
**nasojit** / nasoje, naşewitîne
**ketne** / ketine
**kirme** / kirime
**bibitin** / bibe

Lêkera «**nêrîn**» jî di devokê Hekarîya da bi çend rengan tête gotin:
Li Colemêrg, Elkî, Şax, Qesrik û piranîya Elbakê: **berê xwe dan** (berê xwe bide, berê xwe de)
Li Çelê: **berê xwe dan, zên dan û nêrîn** (berê xwe bide, berê xwe de, zên de, binêre)
Li nav Goyan: **hêre kirin** (hêre bikê, hêre ke)
Li Gever, Oremar û Çelê: **zên dan** (zên de)
Li hind alîyên Elbakê: **mêze kirin** (mêze bike, mêze ke)
Li Şemdîna: **berê xwe dan, berêxo dan** (berê xwe bide, bere xwe de, berê xo bide, berê xo de)

Forma lêkera «**nas kirin**» jî di devokê Hekarîya da têta guhartin û dibe «**niyasîn**».
Şûna; «**ez nas dikim**», «**ez dinyasim**» dibêjin.
Forma negatîv jî : «**ez nanyasim**» e.
Lêkera «**hînbûn**» jî di devokê Hekarîya da wisa bi kar têt: «**Hûbûn, hûrebûn**»...

## Di devokê Hekarîya da lêkera «bûn» :

Demê niha: Ez im, **tu yî**, ew e, em in, hûn in, ew in.
Forma neyînî (negatîv): Ne ez im, ne **tu yî**, ne ew e, ne em in, ne hûn in, ne ew in.
Borîya berdest: Ez bûm, **tu bûy**, ew bû, em bûn, hûn bûn, ew bûn. (Ev forme li başûra Hekarîya û li dorberê Amêdîyê wisa bi kar têt: Ez bîm, tu bî, ew bî, em bî, hûn bîn, ew bîn...
Forma negatîv: Ne ez bûm û herwisa pê da diçe...
Borîya dudar: Ez bûme, **tu bûyî**, ew bûye, em bûne, hûn bûne, ew bûne.
Forma negatîv: Ez ne bûme û hwd...
Borîya çirokî: Ez bibûm, tu bibûy, ew bibû, em bibûn, ew bibûn.
Forma negatîv: Daçeka «**ne**» tête pêş û wisa dom dike...
Raweya gerane (xwezîyê): Ez bam, tu bay, ew ba, em ban, hûn ban, ew ban.
Forma negatîv: Daçeka «**ne**» tête pêş û wisa dom dike...

1° Raweya Bilanî; (Di forma yekemîn ya demê niha da): ez bibim, tu bibî, **ew bibît** / **bibit**, em bibin, hûn bibin, ew bibin.

Forma negatîv: Daçeka «**ne**» tête pêş û wisa dom dike...

2° Raweya Bilanî: (Di forma duyemîn ya demê niha da): Li vê derê hokerê «**heke**» an jî «**ku**» tête serî: Heke (ku) ez bim, heke (ku) tu bî, heke (ku) ew be, heke (ku) em bin, heke (ku) hûn bin, heke (ku) ew bin....

1°Borîya Berdest: Ez bam, tu bay, ew ba, em ban, ew ban.

Forma negatîv: Daçeka «**ne**» tête pêş û wisa dom dike...

2° Borîya Berdest: Ez bibam, tu bibay, ew biba, em biban, hûn biban, ew biban.

Forma negatîv: Daçeka «**ne**» tête pêş û wisa dom dike...

3° Borîya Berdest: Ez bibame, tu bibayî, ew bibaye, em bibane, hûn bibane, ew bibane.
Forma negatîv: Daçeka «**ne**» tête pêş û wisa dom dike...
Raweya Fermanî: Erînî; be, bin, bin / Neyînî; ne be, ne bin, ne bin.

Masdar :**Bûn** / Ne bûn
Mazî: **Bibûn** / Ne bibûn

Raweya Pîşkerî: (Demê niha): Ez dibim, tu dibî, **ew dibît**, em dibin, hûn dibin, ew dibin.
Forma negatîv: Ez na bim, tu na bî, ew na bît, em na bin, hûn na bin, ew na bin.

Borîya Berdest:

1° Ez dibim, tu dibîy, ew dibît, em dibin, hûn dibin, ew dibin.

2° Ez dibime, tu dibîye, ew dibîte, em dibîne, hûn dibîne, ew dibîne.

Forma negatîv: Daçeka «**ne**» tête pêş û wisa dom dike...

Lêkera **vîn** (vîyan) di halê demê niha da 1° Ez divêm, tu divêy, ew divêt, em divên, hûn divên, ew divên. 2° Min divêt, **wi** / **wî** / **wê** (ewi, ewi, ewê) divêt, me divêt, we (Hewe) divêt, wan (ewan) divêt.

Forma negatîv: 1° Ez nevêm, tu nevêy, ew nevêt, em nevên, hûn nevên, ew nevên. 2° Min nevêt, te nevêt, **wi** / **wî** / **wê** (ewi, ewî, ewê) nevêt, me nevêt, we (hewe) nevêt, wan (ewan) nevêt.

**Lihevîya lêker**: Li devokê Hekarîya; di hevokê da kirde û lêker li hev tên. Heke kirde piranî be, hingê lêker bi forma piranî tête gotin: Heke serve piranî be hingê kêşan (deklinasyon) tayîn dike.

Mînak: **Biçûk dibezin** / Zaro dibezin (Li vê derê biçûk pir in, lê belê piranîya wan bi forma piranîya lêker tête kivş kirin. Heke bêjin «**Biçûkan dibezin**» nabe). **Biçûk sêva dixwin** / Zaro sêvan

dixwin. **Biçûk sêva dixwe** / Zaro sêvan dixwe. **Biçûka sêv xwarin** / Zaroyan sêv xwarin. **Biçûk çend sêva dixwin** / Zaro sêvinan dixwin. **Biçûka çend sêv xwarin** / Zaroyan sêvin xwarin. (Li Hekarîya ji bo zarok : biçûk tête gotin)...

Li hind navçên rojava Kurdistanê carina hem kirde hem jî serve bi forma piranî, lê belê lêker bi forma yêkanî tête gotin: Wekî; Zaroyan sêvan xwar. Me sêvan xwar. Helbet ev forme şaş e.

### Ketina tîp û kurtbûna bêjeyan

Helbet wekî hemû ziman an jî devokan, di devokê Hekarîya da jî kurtbûna bêjeya û ketina tîpa ji bêjeyê gelek tête dîtin.... Çend mînak: **paleyê jîr** / palê jîr, **perdeya sor** / perda sor, **malxwêyekî baş** / malxwêkî baş, **mezintir** / meztir, **zaravayê kurmancî** / zaravê kurmancî...

Di devokê Hekarîya da daçekên pêşi û paşîyê di axivtinê da bi kirde an jî bêjeyê ve dizeliqin. Ev ji ber bi lêz axivtina devoki ye... Mînak : **j'mi ra** (ji min ra), **ne'j bo** (ne ji bo), **ew'j** (ew jî), **Xanî'j** (Xanî jî), **ne'j** (ne ji), **cefa'j** (cefa jî)...

Ewi **b'tenê** nehêlin. (bi tenê)
Hûn hemû cilkên xwe **l'xwe** kin. (cilikên xwe li xwe bikin)
Eve **j'we** çetire. (ji we).

### Hokerên cih nîşandanê

«**Kû derê**» di devoke Hekarîya da wekî «**kî derê**», «**kerdi**», «**kîrê**» bi kar têt.
Di hevokê da wisa ye: tu dê çîye «**kerdi**, **kîrê**» anjî «**kî derê**» ? / tu ji «**kîrê**, **kerdi**» anji «**kî derê yî**» ? / tu li «**kerdi**, **kîrê**» anjî li «**kî derê**» rûdinî ?

### Çend bêje ji hêla Hekarîya

**berze** : winda
**biçûk** : zarok
**birsî** : birçî
**bizdandin** : qetandin, tirsandin
**cindî** : bedew
**çu** : tu / «Sohtim gelo çu di min nema»...
**çûçik** : çivîk
**dêrhetav** : tîrhetav, tîrêjên rojê
**ezman** : ziman
**fekirin** : nêrîn
**gêsûbelav** : kezîbelav
**hêj** : hê
**hevişandin** : hevşi kirina pez
**hişyar** : şiyar
**înan** : anîn
**kab** : şilît, şerît
**kelebab** : dîk, dîkil
**law** : xort, ciwan
**leyzbaz** : hîlekar
**mencel** : qazana mezin, sîtil
**mindal** : zarok
**neşêm** : nikarim (şiyan: karîn)
**nik** : cem
**şol** : kar, şixul
**şubî/şibî** : wekî, mîna
**pêkve** : bi hev ra
**perû** : xelat
**pirçikokek** : hindikek
**ramûstin** : maç kirin
**rewal** : xort
**rohndik** : hêsir
**seh kirin** : guhdarî kirin, bihîstin
**sêhl** : sêl
**sotin** : şewitîn
**têk** : bi hev, di yek
**tûkil** : kevilk, tûvilk
**werîn / werandin** : weşîn / weşandin
**xalî** : vala
**zênda** : lê nêrî

### Hinek metelok û gotinên pêşiya ji hêla Hekarîya

Axa li keyfê ye, mal li bin befrê ye.

Berê darê, darê dixemilînît.

Berê gotina xwe bipêje, paşê birêje.

Bixwe şibî mêra, rabe şibî şêra.

Direwîn, carekê dixwe firavîn

Dilê şivan bixwazît, mastî ji nêrî çêdikit.

Ez axa, tu axa, kî golika bibe nav baxa.

Ewrêt reş baran e, ewrêt spî zivistan e.

Hesp suwarê xwe dinyasît.

Xwastin rûreşiyek bît, nedan ducara rûreşi ye.

Jin heye jinkok heye, mêr heye mêrkok heye.

Kuştin heye, reva mêra nîn e.

Kirmê darê ne ji darê bît, zewala darê nabît.

Keda helal, heram nabît.

Kî diket, kî dixwet...

Av ji serûkahnîyê şêlû dibît.

Av bi evrazi naçît.

Bi kevçikî kom kir, bi heskûyê belav kir.

Bira bira ye, bazar cûda ye.

Dengê daholê ji dûr ve'y xweş e.

Destê xwarinê'y dirêj e.

Mirovê nezan, aqilê wî ji kîsê xelkê ye.

Xweş xeber e, lê min ne bawer e.

Suwarê hespê xelkê, herî peya ye.

Zik têr e, çav birsî ye.

Asin sar naçemhît.

Ber li cihê xwe'y giran e.

Çiya bi çiya nakevin, çav bi çava dikevin.

Dîwarê ser befrê ye.

Gêsnê di çavê xwe da nabînît, derzîya di çavê hevalê xwe da dibînît.

Heke ecela bizine hat, nanê şivanî dixwet.

Heke agir berbû dehli, ter û hişt pêk ve disujin.

Her pezek û pêpka xwe.

Hîndî xwe be.

Heta mirinê kirin e.

Her evrazekê, nişîvyek heye.

Heta li ser serê xwe bi rêve neçî, qedrê pîya nizanî.

Xûdanê mirî'y kore ye.

Kero nemire heta kîvar şîn dibin.

Mala direwîni sot, kesê jê bawer nekir.

Her dar li ser binê xwe şîn dibît.

Tifa ser evraz e.

Zikê têr, haj yê birsî nîn e.

-----------------------

**Têbînî:**

— Ji bo parastin û berpêşkirina taybetmendiyên devoka kurmanciya Hekariyan, çu guhartinek di vê nivîsarê de nehatiye kirin.

— Peyva «devok» di zaravayê kurmancî de mê ye. Lê li ba hin Kurmancan ew dibe nêr.

F e r h e n g o k a

# Mewlûda Bateyî

*Amadekar* : Zeynelabidîn ZINAR

| *kurdî* | *tirkî* | *fransîzî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| ala | bayrak | drapeau, étendard | flag, standard |
| avûrû / avrû | haya, ar, haysiyet, onur, itibar | vergogne | shame, bashfulness |
| ayîsîn | tutuşmak, yanmak | brûler | to burn, to be on fire |
| ayîsandin | tutuşturmak, yakmak | mettre le feu | to set on fire |
| babet | uygun, layık, deng | convenable, digne | fit, suitable, proper |
| berze, bizir, winda | kayıp | perdu | lost |
| berze bûn | kaybolmak | être perdu | to be lost |
| berze kirin | kaybetmek | perdre | to loose |
| buxûr | buhur | encens | incense |
| cergebez | kadın-erkek kolkola girilerek çekilen halay | une sorte de ronde mixte | a mixed folk dance |
| çavîn, çavînî | nazar | mauvais œil | evil eye |
| çavîn kirin, çavînî kirin | nazar etmek | porter malheur | to cause illness or misfortune by the evil eye |
| çu, çi, tu | hiç | rien | nothing, no, none |
| dîdar, dîtin | görüşme, görme, ziyaret | entrevue, visite | meeting, visit |
| kînedûz, kînedoz, kîndar | kin güden, kinli | rancunier | vindictive, rancorous |
| revd, rivd | gurup | groupe | group, set |
| seywan, sîwan | şemsiye | parapluie | umbrella |
| şepal | zarif | élégant | elegant, graceful |
| têwerhatin | sarmak, etrafını sarmak, sarıp sarmalamak, kaplamak | encercler | to surround, to coat, to cover, to encircle |
| verêtin | akmak (su vb) | couler (eau) | to run, to flow (water) |
| weryan, werîn, weşîn | dökülmek (saç, yaprak vb) | tomber (feuilles, cheveux) | to fall (hair, leaves) |
| westîn, rawestîn, sekinîn | durmak, kalmak | rester, stopper | to stay, to remains |
| reşbelek | metin, yazı | texte, écrit | text, writing |

F e r h e n g o k a

# Nehc-ul Enama Mele Xelîlê Sêrtî

*Amadekar* : Zeynelabidîn ZINAR

| *kurdî* | *tirkî* | *fransîzî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| bera | sahi, sahiden | vrai, vraiement | right |
| duezmanî | iki yüzlülük | hypocrisie | hypocrisy |
| dibac | ipek elbise | vêtement en soie | silk cloth |
| dujîn: çêr, dijûn, zêf | küfür | injure, insulte | insult |
| peşîwa | rehber, öncü | guide | guide |
| sezawar | layık, müstahak | qui est digne de, méritant | who merits |
| vebuhtin, vebuhandin | tayin etmek | nommer, désigner | to appoint, to nominate |
| reha bûn | kurtulmak | être libéré, être sauvé | to be freed |

F e r h e n g o k a

# *Zargotina Kurdên Sûriyê*

-II-

(ji sitrana «*Mîr Mendelî û Gulistan*»)

*Amadekar* : Mahmûd LEWENDÎ

| *kurdî* | *tirkî* | *fransîzî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| ‘era, ‘erên | buruna takılan yüzük biçimindeki hızma | ornement en forme d’anneau porté sur le nez | nose-ring |
| berdevk | sigara, pipo ağızlığı, nargilenin ağıza konan kısmı | embouchure d’une pipe ou fume-cigarette | mouth-piece of a pipe, cigarette holder |
| biwar | mukabil, ön | devant, face | in front of |
| cixsî | silahçı dükkanı | armurier | armourer |
| çerxî | beş kuruşluk Osmanlı parası | pièce ottomane de 5 piastres | a 5-piastre piece |
| çox, çux | çuha | toile en poils de chèvre | goat-hair cloth |
| deqandin | tık tık vurmak | tapoter | drum one's fingers |
| deskêşî xwe kirin | yedeğinde götürmek | conduire un cheval de réserve au côté du sien | lead a spare horse |
| fit/fît | bitirme, fit | épuisement, achèvement | exhaustion, completion |
| goştbirinc | etli pirinç pilavı | sauté de viande au riz | stewed meat and rice |
| gulêrî | güllü | à décor floral | a floral decoration |
| helîmok | Kürt müziğinde makam türü | un mode musical kurde | a Kurdish musical mode |
| heşandin | doldurmak, dolgu yapmak | remplir, bourrer | fill, stuff |
| kepisandin | kapamak, sıkıştırmak, yerleştirmek | mettre en place, fixer | put in place, position |
| kevî | kenar | bord | edge |
| kit | tek | impair | odd |
| kito kito | teke tek | un à un | one by one |
| kuram, pismam, kurmam | amca oğlu | cousin paternel | cousin (of father's side) |
| kurdanî | Kürt usülü, Kürtçe | à la kurde | Kurdish style |
| kutilk, kutlik, kuftik | içli köfte | boulette de gruau à la viande haché | meat ball with groats |
| lev û lev | dopdolu | rempli à bord | full to the brim |
| mehîna boze sîse sayî/çîl sipî | lekeziz at | cheval à robe blanche ...... | white horse |
| menegî | yarış kısrağı | jument de course | racing mare |
| naşî kirin, şanî kirin, şanî dan | göstermek | montrer, désigner | show, indicate |
| pala xwe dan | yaslanmak | s’adosser | lean back |
| paldan | yaslanmak, itmek, yatmak | s’adosser, s’allonger | lean back, lie down |
| payîzok | Kürt müziğinde makam türü | chanson d’automne, genre musical kurde | autumn song; a type of Kurdish music |
| qaqim | kelle, baş | crâne | head |
| qelandin | kavurmak | frire | to fry |
| qerepîn | karabin tüfek | carabine | carbine, gun |

| | | | |
|---|---|---|---|
| qeyserî | kapalı çarşı | marché couvert | covered market |
| qoq | kelle, baş | crâne | head |
| quraftin | demir, ağaç, plastik v.b. sert şeyleri bükerek kırmak, devşirmek | rompre, briser | to break |
| raser | üzeri, üzerinde | sur, au-dessus | on, on top |
| rav hilanîn | hayvan izi sürmek | suivre la trace d'une bête | tracking an animal |
| rav | paralel çizgi | lignes parallèles | parallel lines |
| rav | toplu av, saf kurarak avlanmak | chasse collective | a hunt |
| ravravî | paralel çizgili kumaş v.s. | tissu à rayures parallèles | cloth with a pattern of parallel lines |
| silav vedan | selamını almak | répondre au salut de qqn. | replying to a greeting |
| sitî | hanım, bayan | dame | lady |
| teqilandin | tartmak, ölçüp biçmek | jauger, peser | to measure, to weigh |
| turkanî | Türk usülü, Türkçe | à la turque | Turkish style |
| xizêmok | Kürt müziğinde makam türü | un genre musical kurde | a type of Kurdish music |
| xwînî | kan davalı, katil | assassin | assassin, murderer |
| Yezîrgan | Erzincan | la ville d'Erzincan | the town of Erzincan |
| zîz | ince, nazik | tendre, sensible | tender, sensitive |

# ZEWAC

*Amadekar* : Lutfî BAKSI

| ***kurdî*** | ***tirkî*** | ***fransîzî*** | ***îngilîzî*** |
|---|---|---|---|
| zewicîn | evlenmek | se marier | to marry, to get married |
| zewicandin | evlendirmek | marier | to arrange a marriage |
| zewac | evlilik | mariage | marriage |
| şû kirin, mêr kirin, çûn mêr | evlenmek (kadın için) | prendre époux | to take a husband |
| jin anîn | evlenmek (erkek için) | prendre épouse | to take a wife |
| bi serî kirin/bûn, bi mal kirin/ bûn | evlendirmek / evlenmek | marier | to marry, to arrange a marriage |
| serî girêdan | başını bağlamak (evlendirmek) | marier | to arrange a marriage |
| di (bin) çav re kirin | gözüne kestirmek | avoir des vues sur qn. | to have one's eye on someone |
| geryan, lê gerîn, çav lê gerandin | gözücüye çıkmak | se mettre à la recherche d'une fiancée | to start looking for a bride |
| keçdîtin, dîtin, çûn dîtiniyê | 1) kız bulmak (gelin adayı), görmek 2) görücüye gitmek | chercher une fiancée | to look for a bride |
| keçdîtin, dîtin, dîtinî | görücüye gitme | recherche d'une fiancée | looking for a bride |
| bi dilê... bûn / pê qayil bûn | benimsemek, razı olmak | consentir | to consent |
| herê / erêkirin | kız tarafının dünüre kız istemeye gelmeleri için olur vermesi | accord ou aval des parents de la fille pour donner sa main | agreement of a girl's parents for her marriage |
| çûn xwazgîniyê | kız istemeye gitmek, dünüre gitmek | aller demander une fille en mariage | to ask for a girl in marriage |
| xwazgînî, xwazgîn | kız istemeye giden kişi veya kişiler | ceux ou celles qui vont demander la main de la jeune fille | the match-makers |
| qasid | elçi | ambassadeur | ambassador |

| | | | |
|---|---|---|---|
| qelen, next | başlık | dot payée aux parents de la fille | dowry (paid to the girl's parents) |
| qelen birîn / qelen vebirîn, next vebirîn | başlık kesmek | décider du montant de la dot | to agree on the amount of dowry |
| qelenbirîn, qelenvebirîn, nextvebirîn | başlık kesme | cérémonie de décision du montant de la dot | ceremony for agreeing on the amount of dowry |
| binkîs | hatır akçesi olarak başlıktan kız babası tarafından bağışlanan meblağ | remise sur la dot consentie par le père de la fille en honneur de qn. | reduction in dowry agreed by the girl's father in honour of someone |
| xwastî | sözlü | engagée | wooed |
| nîşanî | nişanlama, nişan, nişan töreni | fiançailles | engagement |
| nîşan kirin, nîşan pê ve kirin | nişanlamak | acte de fiancer | the act of betrothing |
| şerbet, şîrînî | şerbet merasimi | cocktail offert pour célébrer l'engagement | cocktail to celebrate the engagement |
| destgirtî, dergîstî | nişanlı | fiancé(e) | fiancée |
| dest girtin | nişanlamak | fiancer | to betroth |
| sozdar, herêkirî | sözkesilmiş, sözlü | fiancé(e), promis(e) | betrothed |
| xelat, sernext | hediye | cadeau | present |
| şîrmijî, heqê şîr | süt bedeli (başlık kesilirken kız annesi için verilen meblağ veya hediye) | part de la dot payée à la mère de la fiancée comme «prix de l'allaitement» | part of dowry paid to the girl's mother for having breasted her |
| rê vekirin | nişanlı erkeğin nişanlılık döneminde kız evini ziyaret için hediye göndererek izin istemesi | cadeau envoyé par le fiancé pour obtenir la permission de rendre visite à la maison de la fiancée | present sent by the fiancé to obtain permission to visit his fiancée's home |
| rêvekirinî | nişanlı erkeğin nişanlılık döneminde nişanlısının ziyaretine ilişkin izin | permission obtenue par le fiancé pour rendre visite à la maison de la fiancée | permission given to the fiancé to visit his fiancée's home |
| cihêz danîn, karê bûkê kirin | çeyiz hazırlamak | préparer la dot de la mariée | preparing the bride's dowry |
| cihêz, kar | çeyiz | dot de la mariée | bride's dowry |
| çûna ser cihêz, dîtina cihêz | çeyizi görmeye gitmek | aller voir la dot | going to see the bride's dowry |
| xwençe, bişare, xelat | düğüne davet için gönderilen hediye | cadeau envoyé en guise d'invitation aux noces | present sent with invita-tion to the wedding |
| serşo | gelinin düğün için hamama götürülüp yıkanması | cérémonie de bain de la mariée | ceremony of the brides's bath |
| henne, xena, desthenne | kına; kına gecesi | cérémonie d'application de henné sur la main de la mariée | ceremony of staining the bride's hands with henna |
| vexwandî, xwandî, da-wetî, gazîkirî, dawetvanî | düğün davetlisi | invité au mariage | wedding guest |
| xwandî | düğün davetlilerini çağıran | celui qui invite aux festivités de mariage | person who issues the invitation to the wedding |
| dawet, şahî | düğün | noces, fêtes de mariage | wedding festivities |
| serspî, porspî, serejin | düğün alayı öncesi gelin evine gönderilen haberci kadın | femme d'un certain âge envoyée chez la mariée pour annoncer le début du défilé nuptial | elderly woman sent to the bride to announce the begining of the wedding procession |
| rovî (berbûrî) | düğün alayı öncesi gelin evine gönderilen haberci erkek | homme chargé d'aller chercher la mariée chez ses parents | man responsible for fetching the bride from her home |
| berbûk, berbûdî | 1) düğün esnasında geline refakat eden ve aynı zamanda | 1) dame accompagnant la mariée pendant les | 1) matron of honour (the bride's advisor |

| | | | |
|---|---|---|---|
| | ona danışmanlık yapan yaşlı kadın. 2) damadın evinde gelinin ilk duvağı açıldığında erkek çocuğu olması dileğiyle gelinin kucağına oturulan erkek çocuk. | festivités de mariage et lui servant de conseillère 2) garçonnet que l'on fait asseoir sur le genou de la mariée à son arrivée chez le marié avec le souhait qu'elle mette au monde un garçon | during the ceremonies) 2) small boy placed on the bride's knees upon her arrival at the bridegroom's home with the hope that she will bear a son |
| berbûkî | kadınlardan oluşan gelin alayı | défilé nuptial formé de femmes | wedding procession of women |
| berbûk | kadınlardan oluşan gelin alayına katılan kişi | femme ou fille partici-pant au défilé nuptial | a girl or woman taking part in the procession |
| birazava | sağdıç | garçon d'honneur | bride-groom |
| xêl, xêlî | düğün alayı | défilé nuptial | wedding procession |
| xêlî | duvak | voile de la mariée | bridal veil |
| bûk siwar kirin | gelini ata bindirmek | faire monter la mariée à cheval | mounting the bride on a horse |
| berderî | kapıbağı (kapı önü kesilerek alınan) | présent offert à celui qui se tient devant la porte d'entrée de la mariée au moment où on vient chercher celle-ci | present offered to the person at the door of the bride's home when she is fetched away |
| piştderî | kapı bağı (kapı ardı kesilerek alınan) | présent offert à celui qui se tient derrière la porte d'entrée de la chambre de la mariée au moment où on vient chercher celle-ci | present offered to the person standing behind the bride's home when she is feched away |
| hespkêş | gelin atının başını çeken | celui qui tient les rênes du cheval transportant la mariée | the person holding the bride's horse's reins |
| piştgirêdan | belbağı (gelin kardeşinin gelinin beline kemeri bağladığında aldığı hediye) | cadeau donné au frère de la mariée lorsqu'il met la ceinture autour de la taille de la mariée | present given to the bride's brother when he puts the girdle on the bride |
| sergirêdan | başbağı (gelin başını bağlayana verilen hediye) | cadeau offert à celui ou celle qui place la coiffe de la mariée | present given to the person who places the crown on the bride's head |
| sersindoq | gelin sandığının üzerine oturana verilen hediye | cadeau offert à celui ou celle qui est assis(e) sur le coffre de la mariée | present given to the person sitting on the bride's trunk |
| gîska 'ezepan | genç delikanlıların gelin alayının gelişinde yollarını keserek aldığı hediye | cadeau obtenu par les jeunes gens se mettant en travers de la route du défilé nuptial | present given to the young men barring the way of the procession |
| zengogirtin | atın üzengesini tutana verilen hediye | cadeau offert à celui qui tient l'étrier du cheval de la mariée | present given to the person holding the bride's stirrup |
| destgir | gelinin kolunu tutarak onu bindirmeye götüren veya damadın evi yakın olduğunda onu eve kadar götüren iki yakını | deux proches parents de la mariée qui la tiennent par le bras pour la faire monter à cheval ou l'ac-compagner chez le marié | two of the bride's close rela-tives who hold her arms to help her mount the horse or who accompany her to the bridegroom |
| mehr | nikah | acte de mariage | act of marrigage |
| mehr kirin | nikahlamak | marier | to marry |
| mehr birîn | nikah kıymak | célébrer un mariage | conclude a marriage |
| mehrbirîn | nikahkıyma | cérémonie de conclusion de mariage | celebrate the conclusion of a marriage |
| mehrbirr | nihak kıyan | celui qui conclut l'acte de mariage | official who concludes the marriage |

| | | | |
|---|---|---|---|
| mehrbirrî | nikahı kıyılmış (düğünü henüz yapılmamış) | personne officiellement mariée mais le mariage n'est pas encore fêté | person formally married but whose marriage festivities have not yet taken place |
| bermehr, bedelmehr | nikahta erkek tarafının kadının geleceği için vad ettiği güvence akçesi | somme promise par la famille du marié comme garantie d'avenir pour la mariée | amount of dowry personally guaranteed to the bride |
| mehr avêtin ser | nikahına geçirmek (biçimsel olarak yapılan nikahlama) | mariage formel, mariage blanc | 'marriage' in name only, paper mariage |
| bûk | gelin | mariée, épousée | bride |
| zava | damat | marié, époux | bride-groom |
| serşoya zava/ê | gerdek için damat adayının yıkanma merasimi | cérémonie de bains du marié | ceremony of the bride-groom's bath |
| rûkurkirina zava/ê | damat traşı | cérémonie du rasage de la barbe du marié | ceremony of shaving the bride-goom |
| paşatiya zava/ê | gelinin damat evine gelmesi ile başlayan ve damadın gerdeğe girmesine kadar süren ve çevredeki bekarlardan oluşturduğu adamlarıyla sürdürdüğü beyliğidir | période de réjouissances incluse entre l'arrivée de la mariée et la nuit nuptiale, au cours de laquelle le marié accompagné de ses amis célibataires fête ses dernières heures de célibat | period of festivities between the conclusion of the marriage and its consommation during which the bride-groom spends with his bachelor friends his last hours of little lord |
| şabaş | 1) duğünlerde damat için toplanan para v.s. bağışta bulunanların isimleri toplulukta söylenerek yapılan merasim. 2) düğünde çalgıcıların düğüne katılanlardan topladıkları bahşis | l) argent collecté au cours des festivités de mariage pour venir en aide au marié, 2) pourboire collecté par des musiciens qui nomment et font l'éloge de leurs bienfaiteurs | 1) money collected during the marriage festivities to help the bridegroom 2) tips collected by the musicians for singing the praises of the guests |
| guhastin | gelinin damat evine getirilmesi | conduire la mariée chez le marié | leading the bride to the bride-groom's home |
| veguhastin | berdel halinde gelinlerin götürülmeleri | fête de mariage au cours de laquelle un frère et une sœur épousent une sœur et son frère | feast of of marriage, when a brother and sister are married to sister and brother |
| berdêlî, berdil, pêguhork | ailelerin karşılıklı olarak kızlarını birbirine gelin vermeleri, berdel | mariage croisé où un frère et une sœur épousent une sœur et un frère | double marriage between a brother and his sister with a sister and her brother |
| gerdek | zifaf, gerdek | chambre nuptiale | nuptial room |
| berdan | boşama, boşanma | divorce, répudiation | divorce, repudiation |
| berzewac, xame | evlilik çağına gelmiş kız veya erkek, ergen | fille ou garçon en âge de se marier | youth of marriageable age |
| kıtan lê şkestî | evlilik çağını aşmış genç kız | vieille fille | unmarried girl |
| zavayê navmalê | iç güveyi | gendre qui habite chez ses beaux-parents | son-in-law living in his wife's family |
| çûyîna sermalê | dul kadınla evlenen erkeğin kadının evine taşınması | épouser une veuve et s'installer chez elle | marry a widow and live in her house |
| hewî, hêwî | kuma | co-épouse | second wife |
| serhewiyê | kuma üstüne giden (evlenen) | mariage d'une femme avec un homme déjà marié | marriage of a woman with an already married man |
| jinebî, bîjin | dul kadın | veuve | widow |
| mêrebî | dul erkek | veuf | widower |
| keç revandin | kız kaçırmak | enlever une fille | to elope with a girl |
| revok | aynı kızı tekrar kaçıran erkek | homme qui enlève pour la deuxième fois la même fille | a man who elopes twice with the same girl |

| | | | |
|---|---|---|---|
| revandî | kaçırılan kız | fille enlevée | kidnapped girl |
| darika zava/ê | gelin alayını damda bekleyen damadın yanında süslenen özel hazırlanmış ardıç ağacı | arbre décoré auprès duquel le marié attend l'arrivée de la mariée | ornamented tree beside which the bridegroom awaits the bride's arrival |
| nemêr | iktidarsız (cinsi) | impuissant, impotent | impotent |
| nêremê, nêramê, nêrebûk | kız-oğlan, hünsa | hermaphrodite | hermaphrodite |
| koçek | köçek, çengi | danseur, danseuse | dancer |

## Ferhengoka
# Yûsif û Zuleyxa

*Amadekar* : ELÎŞÊR

| *kurdî* | *tirkî* | *fransîzî* | *îngilîzî* |
|---|---|---|---|
| hîn: dem, wext | an, vakit | moment | a while, moment |
| xewas | dalgıç | plongeur | diver |
| serpoş | 1) başı örtülü, 2) başörtüsü | 1) qui a la tête couverte, 2) couvre-chef | 1) whose head is covered, 2) head gear |
| bi yekdan: bi carekê | birlikte, bir seferde | en une seule fois, ensemble | all at one, together |
| çar û naçar | ister istemez | volens nolens | willy-nilly |
| pencik: penç, pençe | pençe | griffe | paw, claw |
| zarî kirin; zarîn | inlemek, yalvarmak | gémir, supplier | to groan, to implore |
| bikirr | müşteri, alıcı | client | customer, client |
| balîn | başucu | chevet | bed (head), bedside |
| kax: qesr, koşk | saray, köşk | palais | palace |
| berzex | 1) araf, 2) ince uzun kara parçası | 1) purgatoire 2) isthme | 1) purgatory 2) isthmus |

hejmar 16 zivistan 1995

# KURMANCÎ

*rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî*

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*
*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## Alavên candiniyê




*Amadekar : ELÎŞÊR*

| *kurdî* | *tirkî* | *fransizî* | *inglîzî* |
|---|---|---|---|
| EREBA GA, GERDÛM | KAĞNI | CHAR À BOEUF | OXEN CART |
| **A — ji aliye jor ve** kopî | **üstten görünüşü** kağnı karöserinin ön ve arkadaki iri ve güçlü tahtasına verilen ad. | **vue d'en haut** pièces de bois de dvant et de derrière du char | **upper view** wooden front and rear parts of a cart |
| 1- a) kopiyê paşî | arka tahta | planche de derrière | back board |
| b) kopiyê pêşî | ön tahta | placnhe de devant | fore board |
| 2- toq | tekerlek çemberi | anneau encerclant la roue | ring encircling the wheel |
| 3- maran | tekerleğin ağaçtan gövdesi | roue en bois | wooden wheel |
| 4- akêr (çar lib in) | karöser yük bağlama sırıkları | batonnets de fixation de la charge | load fixing bars |
| 5- kursiv | tekerleğin ağaç pimi | boulon en bois de la roue | wooden wheel axle pins |
| 6- mazlix | sürücü oturağı | siège du conducteur | driver's seat |
| 7- çîçirk | urgan veya halat sıkıcı | | |




| | | | |
|---|---|---|---|
| **B — ji aliyê binî ve** | **alttan görünüşü** | **vue d'en bas** | **view from below** |
| 1- arêx, rexgerdûm | karöser taşıyıcı | | |
| 2- balge | dingil yastığı | coussin de l'axe | axle's seating |
| 3- sirnî | dingil | axe, arbre | axle, axle-tree |
| 4- akêra sirniyê | dingil tespit çubukları | fixateurs de l'axe | axle holding pins |

## Civîna payîza 1994an

**Civîna payizê di navbera rojên 5-11 teşrîn 1994an de li Swêdê, di xwendegeha Biskops Arnöyê de çêbû. Bernameya vê civînê, ji gotûbêjên li ser hin pirsên rastnivisînê, ferhenga** *Pehlewî, devoka Qerejdaxê, alavên çandiniyê, ferhengokên Mem û Zîn, Roja Nû* **û** *termên hiqûqê* **pêk hatiye.**

**Em hin ji encamên vê civînê di vê hejmara Kurmancî de diweşînin.**

**Hevalên ku beşdarî vê civînê bûbûn ev in : Khosrow Abdollahî (Selmas), Mizaffer Begzade (Şikak), Elîşêr (Wan), Lutfî Baksî (Xerzan), Rojen Barnas (Diyarbekir), Rojan Hazim (Hekarî), Musa Kaval (Hekarî), Hemîd Kiliçaslan (Mêrdîn), Mehmûd Lewendî (Qerejdax), Kendal Nezan (Diyarbekir), Zinar Soran (Dêrik), Veysi Zeydanli (Bidlîs), Zeynelabidîn Zinar (Batman) û Reşo Zîlan (Agirî).**

| **C — paxêl, parxêl, kişke** | **öküz tarafından çekilen kızak** | **traîneau à boeuf** | **oxen sledge** |
|---|---|---|---|
| 1- palûl | kızağın boyunduruk bağlantı çubukları | fixateurs du joug du traîneau | sledge yoke harness |
| 2- têli | yük tutmaya yarayan üst yan kavisli çubuklar | tiges de fixation de la charge | load fixing rods |
| 3- kopî | kızak tespit çubukları | fixateurs du traîneau | sledge cross members |
| 4- sing | kızak tespit çubukları | baguettes de fixation | sledge fixing wands |
| 5- pêpaxêl | kızak ayakları | patins du traîneau | sledge skates |
| 6- punca palûlê | bağlama pimi | goujon, cheville | dowel |







| **D — dirgan, çarguh, şene (melhêba hesinî)** | **yaba** | **fourche** | **fork** |
|---|---|---|---|
| 1- destî, destik | sap | manche | handle |
| 2- guhmelhêb | yaba kulağı | fourchon | tines of the fork |

| E — melhêb | ağaç yaba | fourche en bois | wooden fork |
|---|---|---|---|
| 1- destî | sap | manche | handle |
| 2- guhmelhêb | yaba kulağı | fourchon | tines of the fork |




| **F — mehlî, malî, şapane** | **tapan** | **rouleau** | **roller** |
|---|---|---|---|
| 1- şivmehlî | tapan çubuğu | tige du rouleau | roller's rod |
| 2- darmehlî | tapan ağacı | traverse | roller's cross-piece |
| 3- guhmehlî | tapan kulakçığı | montant du rouleau | roller's strut |
| 4- palûl | tapanı boyunduruğa bağlayan çubuklar | tige du joung | yoke's rods |

| **G — kam, moşene** | **döven** | **fléau** | **flail** |
|---|---|---|---|
| 1- rista kamê | çekme zinciri | chaîne de traction | traction chain |
| 2- diran, berheste yan arbeşk (ji hesin) | döven dişi | dent du fléau | flail's serrations |




| **H — cercere, cencere** | **harman döven** | **batteuse** | **threshing machine** |
|---|---|---|---|
| 1- ling, rexcencer | ayak | monture de la batteuse | side strut |
| 2, 3- navpirk | köprücük | traversine | strut |
| 4- tevşû, devbir | döven bıçağı | lame de la batteuse | threshing machine's blade |






| | | | |
|---|---|---|---|
| yekvend | birleşmiş, birleşik | uni, unifié | united, unified |
| yekvendî | birlik | unité | unity |
| seypisan: kurê kuçikan | kelbzade, itoğlu | fils de chienne | son of a dog |
| **xeberbezîn**: xebergerîn | dedikoducu | médisant,potinier | gossiper |
| nehîndirr | sır saklamayan | indiscret | indiscreet, tackless |
| **kusan**: çawan | nasıl | comment | how |
| jinînî | dişilik | féminité | feminity, womanhood |
| werandin | salmak, saçmak, dağıtmak | laisser tomber, (cheveux) éparpiller | to let go, to let hang down, to drop |
| sayewer: sîdar, bi sî, bi saye | gölgesi olan, gölgeli | ombragé | shady, shaded |
| hoçik: hûçik,hiçik,kuy | yen | manche | sleeve, cuft |
| gerr dan | dolanmak | s'enrouler | to roll up, to wind |
| gerra maran | yılanların çiftleşmesi | accouplement de serpents | coupling of snakes |
| vekustin: vemirandin | söndürmek | éteindre | to extingnish, to go out, to put off |
| rahiştin | yükseltmek, kaldırmak | élever, soulever | to rise, to lift |
| veresandin | koparmak, çözmek | défaire, briser | to break, to undo, to untie |
| kîj: keç, qîz | kız | fille | girl |
| zendane | kolu koruyan zırh parçası | brassard (de cuirasse) | arm-piece |
| lendeha: lendehor | pehlivan | héros, personne forte et de haute taille | hero, mighty man |
| kep: kepû, poz, difin | burun | nez | nose |
| jivanî: civan | buluşma | rendez-vous, entrevue | date, appointment |
| hûrdekarî | ince el işi | tavail fin et soigné | fine handiwork |
| pirbêj | geveze, konuşkan | bavard, loquace, disert | talkative, loquacious |
| pirbêjî | gevezelik, konuşkanlık | bavardage, verbiage, loquacité | talkativeness, verbiage |
| bizdandin: qetandin | koparmak | briser, rompre | to break, to cut off |
| raweşandin: hejandin | sallamak | secouer, ébranler | to shake, to shake up |
| rûsikîn: şîn bûn | yeşermek, bitmek | pousser, grandir | to grow |

hejmar 19 havîn 1996

KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî

*Mîn ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*
*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

# Dem û rojên *bi nav û nîşan*

Amadekar : **ELÎŞÊR**

**Newroz** : 21ê adarê (zayînî) (di teqwîma kevn a rûmî de 9ê adarê bû)

*Adar e dew li dar e*

*Adarê berf hat guliyê darê*
*Sibe lê nebû êvarê*
an
*Adarê berfê da guliyê darê*
*Nema heta êvarê*

*Adar e, dew li dar e*
*Ne li vir, li Kewkeb û Sincar e*
*Li ba şivanê xumal*
*û kebaniya bi kar û bar e*
(li ba koçerên Kîkan)

*Newroz newroza kalanî*
*Dar gopalê xwe hilanî*
*Zivistan û bihar ji hev deranî*

**Hivde** : 17ê adara rûmî; di vê rojê de xelk, xort, jin û keç diçin ser ziyaretê. Ji bo du sê rojan, şahî û bazar saz dibe û dibe wek karnavalekê. Di wan rojan de keç revandin mubah e.

*Hivde xericî, Eyş nedericî*
(Cejna hivde derbas bû dîsa Eyşê di mal de ma, qismetê wê venebû).
(li navçeya Silîva û Mûşê).

**Hêkesor, zadîk** : di dawiya adarê, destpêka nîsanê de ye; hêkan dikelînin û bi rengê sor boyax dikin. Bi hêkên sor dileyîzin. [(t) paskalya, (f) pâques, (i) Easter].

**Avêtik, gamêşqiran** : 20ê nîsanê (7ê nîsana rûmî); berf êdî dihele, kêm dibe. Avîtik befrê avête qirika dîk.

**gamêşqiran** : li gor riwayetekê, di 7ê nîsanê de teyrok bariyaye, 7 gamêş bi hev re mirine. Ava barana 7ê nîsanê dermanê zerikê û çavêşê ye.

*Di avêtikê de bibare bihar e, nebare xedar e.*

**Serê gulanê** : 13ê gulanê (1ê gulana rûmî) : di vê rojê de her kes kincên xwe yên bedew li xwe dikin, derdikevin çol û çixariyê. Di wê rojê de li mala xwe mayîn bêoxirî ye. Divê herkes li derva be. (li deşta Silîva).

**Çil 'esir** : ji 22ê adarê dest pê dike, çil rojan dom dike; di wî çileyî de her roj dana 'esrê baran dibare [(t) kırk ikindiler].

**Cejna zozanan** : şahiya çûyîna zozanan, di hefteya pêşin a hezîranê de (Li navçeya Serhedê).

**Rojveger** : 21ê hezîranê (berê di 9ê hezîrana rûmî de pîroz dikirin) ; roja dawiya biharê, destpêka havînê ye.

**Qurix** : demeke ku havîn dişkê, ber bi payizê ve diçe.

**Berxbirîn an berxbir :** : li aliyê Wanê û Bidlîsê jê re **vartîvar** dibêjin. 23ê tîrmehê (10ê tîrmeha kevn) ye. Wê rojê diçin ciyekî kifş ji bo çixariyê, şahî dikin, berx dibirin.

**Gûzweşînk** : dema weşîna gûzan, di payîzê de.

# *Civîna Biskops Arnöyê ya 19emîn*

Civîna 19emîn ya *Kurmancî* li Biskops Arnö (Swêdê) di navbera 31ê adarê - 6ê nîsana 1996an de çêbû. Di vê civînê de kesên beşdar li ser *dem û rojên bi nav û nîşan; termên biqûqî; îdyomên kurdî; devoka Qerejdaxê; termên aborî û peyvên li ser nîşanên demên salê û guhurîna hewayî li hêla Hekariya* xebitîn.

Di vê civînê de, Mustafa Aydogan (Qiziltepe), Lutfî Baksî (Xerzan), Rojen Barnas (Diyarbekir), Salim Çeliker (Diyarbekir), Elîşêr (Wan), Rojan Hazim (Hekarî), Hemîd Kiliçaslan (Mêrdîn), Mehmûd Lewendî (Qerejdax), Kendal Nezan (Diyarbekir), Zinar Soran (Dêrik), Veysi Zeydanli (Bidlîs), Zeynelabidîn Zinar (Xerzan) û Reşo Zîlan (Agirî) beşdar bûn.

**Nan û tirî** : ji 15ê îlonê de dest pê dike; dema ku tirî ew qas pirr e ku êdî bi nan re tê xwarin; di wê demê de qewlê şivan û gavanan jî xelas dibin. Ev dem qasî du hefteyan dom dike.

**Rezçinîn** : dema çinîna rezan e; di payîza navîn de ye.

**Korkud** : rojvegera zivistanê, 21ê kanûna pêşî (9ê kanûna rûmî).

*10ê kanûnê, rojê berê xwe da havînê.*

Ji 10ê kanûna rûmî, 22ê kanûna teqwîma nû êdî roj dirêj dibin.

**Xaç** : 7ê kanûna paşî (rûmî) : roja ku bi merasim xaç davêjin avê, kehanet dikin ku dê sal çawa derbas bibe (20ê kanûna paşî). Çile : 20 roj ji kanûna pêşî û 20 roj jî ji kanûna paşî ye.

**Xidirnebî** : 21ê kanûna paşî (rûmî); 4ê sibatê. Ji 7ê kanûna paşî yanî ji roja xaçê heta 21ê mehê. Roja Xidirnebî, zivistan dijwar e.

*Xaç û Xidirnebî*
*Wey li halê wî li mala xwe nebî*
*Şîv hebî taştê tûnebî*

**Roja agir ; agirê Filan** : li Bidlîsê jê re xetre dibêjin. 14ê sibata rûmî (27ê sibatê) ye. Agirê roja leyz û govendan e; wê evarê xelk êzingên hişkkirî (xitre) an daran vêdixin, bi saetan şahî dikin, govend digrin. Li gora mezinan mirov bi vê leyz û govendan gunehên xwe diweşînin. (f) *carnaval de février*)

**Zîp** : çarşema reş; roja çarşema hefteya dawîn a meha sibatê (rûmî) ye. Wê rojê pîrê (caziyet an keça şeytan) diçe mala bavê xwe û hefteyekê şûn de vedigere. Di vê hefteya bê oxir de (26ê sibatê - 5ê adarê) tawî û bawî diçin ser ziyaretan, serê por tên qusandin (jê re zîp kirin dibêjin), tiştên kevn tên avêtin, bi hêviya ku êş û elam û dijwarî bi wan re bên avêtin. Di çarşema destpêka vê heftê û di ya dawiya heftê de cejn û şahî tê kirin. Wan çarşeman kes xwe naşo, berav nakin, nan napêjin, neynok nabirin.

**Sersal** : serê salê li gora teqwîma rûmî; şeva 13ê çileya teqwîma nû ye.

*Serê salê binê salê*
*Xwedê bihêle malxweyê malê*

an

*Xwedê kurekî (keçekê) bide vê malê*

**Gîskfetisîn; gîskoguro** : 28ê sibatê (rûmî); 13ê adarê. Karê xwe li ser lat hilor dikir, lotik didan û digot ;

*Tirt û tirt sibatokê*
*Derketim adarokê*
*Min xwarî gangilokê...*

Sibat, li ser karê dibêje ;

*Xweha min î adarê*
*Bide min du rojên xedarê*
*Da ez karikê*
*Ji ser latê bînim xwarê*

Pîrek ji Tora Banî (Mêrdîn)

# *Çend gotinên li ser nîşanên demên salê û guhurîna hewayî li hêla Hekarîya*

*(Ev nîşane, di nav xelkê da li gor serpêhatî û hejmariya demên salê yên kevin hatine danîn.)*

*Amadekar* : **Rojan HAZIM**

**Baxore** : Kesê ku ji hewayê dizane anku hewazan, meteorolog.

**Bêrdexe** : dûmahîka heyva kanûnê (kanûna pêşîn) ye. Nîşana hatina befira giran e û destpêka çilê zivistanê ye.

**Heyhot** : dûmahîka (anku roja 31ê) heyva çile anjî kanûna paşîn e.
Li ser vê metelokek jî tête gotin : (du versiyon in)

1 - *Heyhot û heyhot*
*Ser me ve çûn*
*her çar heyvêt cot*
*Babê êkê çû kur firot*
*da bi kezwanek û kevot*

2- *Heyhot û heyhot*
*Hatin herdu heyvêt cot*
*Babê kur firot, da bi dar û sot*
*Dayê kiç firot, da bi kezwan û kelot*

**(**Heyvcot: Ji ber ku di nav xelkê da herdu heyvên dûmahîkê yên payîzê û herdu heyvên pêşîn yên zivistanê wekî «çirî, çirî û kanûn, kanûn» têne zanîn, lewma jî bo wan heyva, heyvêt cot têne gotin.)

**Şevzengil** : Ji bo sihê heyva çile (kanûna paşîn) tête gotin. Ev nîşane li ser bûyerekê hatiye danîn :
*Li welatê Hekarîya; mirovekê sê kur û sê bûk hebûne. Ev mirove, yekî zana û serwext bûye. Şeva berî heyhotê anku sihê heyva çile (kanûna paşîn) hemû li mal rûniştine. Mêrik di nişkê da guhên xwe bel dike û dibêje biçûkêt xwe ku bêdeng bin. Dengekê ji kêriya (zinarên biçûk yên li dora gund) pişta gund dibihîze. Hema dibêje ku ev şeve dê befireke giran bêtin. Kurên xwe radike û dibêje ku biçin gayê xwe ser jê bikin. Dibêje bûkên xwe jî ku haziriya kelandina goşt bikin. Ga tête ser jê kirin û qazan li ser agir têne danîn. Di vê demê da ew bi xwe jî dareki 2-3 bihosta dirêj tîte û zengilekê bi serî ve girêdide û diçe ser ban û diçikilîne. Befir dibare, hem jî bêsekinîn. Ew li jor dest bi xwarina goşt dikin. Gava dengê zengilê disekine kurêt xwe rêdike ser ban ku befirê bimalin. Heta sipêdê vî karî didomînin. Bi vê yekê ji bin befira giran xilas dibin. Sipêdê derdikevin gund ku çi bibînin! Gund pêkve maye di bin befirê da û mirov hemû fetisîne. Tenê ew xilas bûne. Ji wê rojê pê ve, şeva berî heyhotê wekî şevzengil bi nav dikin û eve li nav xelkê dibe nîşanek.*

**20ê sibatê** : Hatina firindên sorewêr yên koçer e. Nîşana guhurîna hewa ye. Anku sarma dişikêt.

**Zîpe** an jî **zîpik** : Du cure zîpe hene : **zîpêt sibatê** : Çar rojên dûmahîka sibatê zîpên sibatê ne; **zîpêt adarê** : Çar rojên pêşîne adarê jî zîpên adarê ne.

Gava zîpeyan dest pê kir, êdî seqayê hewa dişikêt û hewa ber bi germê ve diherike. Di zîpeyên adarê da, av li dara digere û eve nîşana hatina biharê ye.
Li ser zîpeyan çend gotin jî hene:

Berî zîpeyan heşt roja heke befir bibare, hingê befir zêde dimîne anku direng dihele. Belêm, piştî zîpeyan heşt roja befir bibare, namîne û zû dihele.
Li ser befira piştî zîpeyan metelokek jî heye:

*18ê adarê 18 bihostêt befirê hatine xwarê*
*Xwe negirt heta danê êvarê*

**Agirxweşî** : 9ê adarê, bi manaya «xweşiyê», agir tête hilkirin.

**Avetîkêt nîsanê** : 10 rojêt serê nîsanê ne. Carina heta 20ê nîsanê jî diajon. Di vê demê da baran gelek dibare û hewa sar dibe. Heke baran bibare dîsa hewa gerimtir e. Belêm, heke hewa sahî be ji çilê zivistanê jî sartir dibe. Di nav xelkê da wekî nîşana sarma biharê têtê zanîn û nexweşî pê têt. Nexweşiyên wekî *ta* û *persîfê*.

**Stêrêt pêrû, pêwir** : Eve komestêr in û wekî şilxê mêşan e. Nîşana hatina havînê ne, ji milê rojhilatê ve têne dîtin. [(t) ülker, süreyya yıldızı, (f) la pléïade, (i) the pleiade.]

**Stêrêt terazî** : Ev stêre jî 25ê hezîranê ji milê rojhilatê ve têne dîtin. Komek in. Sê li milê rastê, sê jî li milê çepê û yêk jî di nîveka wan da wekî terazîyê xûya dibin. Lewma jê ra stêrêt terazî dibêjin. Nîşana destpêka çilê havînê têne zanîn. [(t) terazi takım yıldızları, (f) constellation balance, (i) libra.]

**Çilê havînê** : Ji dûmahîka hezîranê heta 20ê tebaxê dom dike. Kela hewayî bilind e.

**Stêrka gelavêj, qorix** : 15-20ê tebaxê, stêrka gelavêjê derdikeve. Ev stêrke nîşana şikestina germa hewa ye. Hewa ber bi sarmayê ve ye. Piştî stêrka gelavêjê derket, dewar li ser tewlê nayên girêdan. Wekî nîşana xilasiya havînê têtê zanîn. [(t) çoban yıldızı, (f) étoile du Berger, vénus, (i) shepherd's lamp, Venus.]

Li ser hatina stêrka gelavêjê nîşanek jî têtê gotin: Sipêdê here binê dara kezwanê, heke te belgêt zer dîtin ew nîşana derketina gelavêjê ye.

(Stêrêt Perû, terazî û gelavêj heta serê kanûnê (kanûna pêşîn) li esman in. Serê kanûnê ava dibin. Eve jî wekî nîşana hatina zivistanê têtê zanîn.)

**Canemêrg** : Kulîlkek e, ji 10ê îlonê pê ve derdikeve. Nîşana payîz û sarmayê û destpêka çandina payîzê ye.

**10ê îlonê** : Eydil silîv e. Adû, anku mar, kimkime, dûpişk, kêvcale, kirim û ev cûre heywanên dikevin binê axê. (Adû, heywanên xwûşikîn in).

**Aveşûtik** : Dema baran gelek dibare ji beten û pesara ber bi dolan ve aveşûtik çêdibin. Nîşana lehiyê ye. Gava aveşûtik hatin divê ji wan dera dûr bikevin... [(t) yamaçlardan hızla akan su akıntı ya da derecikleri, (f) torrent, gave, (i) torrent.].

# Termên aborî

*Amadekar* : **Salim ÇELÎKER**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| **aborî** | ekonomi, iktisat | économie | economy |
| **binavahî** | altyapı | infrastructure | infrastructure |
| **butçeya salane** | yıllık bütçe | budget annuel | annual budget |
| **daxwazî** | talep | demande | demand |
| **derbas bûn, derbas kirin** | transfer edilmek, transfer olmak | être trasféré | to be transfered |
| **veguhastin, guhastin** | aktarmak, transfer etmek | transférer | to trasfer |
| **deyndêr** | alacaklı | créancier, créditeur | creditor |
| **hêvî** | beklenti, umut | espoir, espérance | expectation |
| **hêza kirînê** | satınalma gücü, alım gücü | pouvoir d'achat | purchasing power |
| **jêkêm** | açık | déficitaire | in deficit |
| **jêkêmî** | açık | déficit | deficit |
| **jêkêmiya butçeyê** | bütçe açığı | déficit budgétaire | budget deficit |
| **jêzêde** | fazla, artık | excédentaire | excess |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **jêzêdeyî** | fazlalık | excédent | surplus, exess |
| **jêzêdeyiya butçeyê** | bütçe fazlalığı | excédent budgétaire | budget surplus, budget exess |
| **mişehî** | bolluk | abondance | abondance |
| **nesafî** | gayri safî, brüt | brut | gross, crude |
| **pêşkêşî** | arz | offre | supply, offer |
| **pêşkêşî û daxwazî** | arz ve talep | offre et demande | supply and demand |
| **safî** | net | net | net |
| **sala butçeyê** | bütçe yılı | année budgétaire | budget year |
| **vexwazî** | alacak | créance, crédit | crédit, claim (financial) |
| **yekîne** | birim, birlik | unité | unity |

F e r h e n g o k a

# HAWARê

*Amadekar* : **Zinar SORAN**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| **arok** | bir cins köfte | une sorte de boulette farcie | sort of meat ball |
| **avtav** | yağmur yüklü bulut | nuage chargé de pluie | rain claoud |
| **bazbazing;** bazingê bazûyê | bazı bileziği | bracelet du bras | bracelet |
| **bê ser û saman:** perîşan | perişan | désemparé | bewildered, distraught |
| **belgihê derwêşiyê** | dervişlik hırkası | manteau rudimen-taire du derviche | dervish's cloak |
| **bêlîte, bêlimte, bêrîte, bêrûte** | karşılıklı türkü eşliğinde oynanan geleneksel bir kürt oynu | danse kurde traditionnelle executée accompagnée de chants alternés | traditional danse accompanied by al ternating songs |
| **berpêşkî** | ön açıklama | préliminaire | preliminary |
| **bi qîma dilê xwe** | gönlünce, gönlünün istediği gibi | à sa guise, selon les voeux de son coeur | according to one's heart's desire |
| **bişkoj;** bişkov, gupik | tomurcuk | bourgeon, bouton | bud |
| **biqbiqok** | su kabarcığı | bulle | bubble |
| **bîrawer**; yê ku di bîrê de dimîne | unutulmayan, hafızada kalan | mémorable | memorable, unforgettable |
| **biryan,** biraştî | biryan | rôti | roasted |
| **bor,** bihur | su geçiti | passage, gué | ford |
| **çandbar** | ekilebilen | cultivable | cultivatable, suitable for cultivation |
| **canrevîn** | canrüba, gönül kapan (dilber) | qui ravit le coeur,ravissante | soul-ravishing |
| **çarparsû** | (taş, ağaç) dört köşeli | équarri | squared |
| **dêmîr** | valide sultan | reine mère | the queen mother |
| **dêris kirin** | viran etmek | ruiner, réduire en ruines | to ruin, to cause the ruin of |
| **dêris:** kavil, wêran | virane, harabe | ruine | ruin |
| **derpêş kirin** | göz önüne getirmek, ileri sürmek | mettre en avant, mettre en vue | to put forward |
| **dilrast** | dürüst | franc, honnête | honest, frank, straight |
| **dilsar** | kırgın olmak, soğumak | distant, déçu | unwilling, disappointed |
| **dilsar bûn** | kırgın olmak, soğumak | être deçu, désabusé | to be disappointed |
| **dûmat:** musîbet | bela, musibet | calamité, malheur | calamity, misfortune |
| **ekfî** | bir çeşit kafkasya hançeri | poignard caucasien | Caucasian dagger |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **firolek** | uçucu | volatile, qui peut voler | volatile, flying |
| **gidêmî** | bir çeşit Arap hançeri | une variété de poingard arabe | a kind of Arab dagger |
| **go;** gog | ağaç ya da kıldan yapılan küçük top | balle en bois ou en poils utilisée dans le hockey | hockey ball |
| **gulîvk,0 gulik** | püskül | pompon | tassel, pompon |
| **heyber** | nesne | objet | object |
| **jûvan bûn** | pişmanlık duymak, yaptığına üzülmek | regretter, être désolé | to regret, to feel sorry |
| **kavil:** kevil, post | deri, post | peau d'animal | skin, undressed skin |
| **kavilandin:** kevilandin, kevil kirin | derisini yararak yüzmek | écorcher (un animal) | to skin (an animal) |
| **kilox** | kelle, hayvan başı | tête d'animal | animal's head |
| **kudandin** | izlemek, peşine düşmek | poursuivre | to pursue |
| **kumribkirî**: kumê dora wî bi rib kirî | etrafı çeyrek altın liralarla bezenmiş kadın başlığı | coiffure féminine parée de piécettes en or | woman's hair style adorned with gold coins |
| **lawjebêj:** stranbêj | türkü, ilahi okuyan | chanteur (de chants longs ou religieux) | singer, chanter (of long religious chants) |
| **lêk ve bûn** | tasnif olmak | se classer, être classé | to be classified, sorted out |
| **lêk ve kirin** | tasnif etmek | classer | to classify, to file |
| **mayî** | artık | reste, résidu | remnant, residue |
| **navro** | ırmak içindeki adacık | îlot situé au milieu d'un fleuve | island (in a river) |
| **nêreng** | büyü | magie, charme | magic, charm, enchantment |
| **nesrîn** | yaban gülü, Van gülü | variété de rose, rose de Van | a variety of rose, rose of Van |
| **nivandin** | uyutmak | endormir | to send to sleep; to lull to sleep |
| **nûsandin**: zeliqandin | yapıştırmak | coller | to glue, to stick |
| **nûsîn**: zeliqîn | yapışmak | se coller, adhérer | to adher |
| **nûza** | turfa, körpe | nouveau né, tendre, frais, jeune | new borne, tender, very young and fresh |
| **piyar** | rahim | miséricordieux | merciful, compasionate |
| **piyarî** | rahmet | miséricorde | compassion, God's mercy and grace |
| **pizrûk:** hûrbaran | çiseleme | brume | mist |
| **qelîsêl** | saç kavurması | viande frite sur un pla-que métalique chauffée | meat fried on hot sheet iron |
| **qewan:** sêlik | müzik plağı | disque de musique | gramophone record |
| **qîr** | katran | goudron | tar |
| **qitik** | bıldırcan | caille | quail |
| **qumrî** | kumru | tourterelle | turtle dove |
| **raçandin** | dokumak | tisser | to weave (tissue) |
| **raxer** | sergi, mefruşat | meubles, mobilier, ameublement | furniture, carpets |
| **rêman** | kavram, mefhum | notion | notion, concept |
| **rik** | inat | obstination, entêtement | obstinacy, stubborness |
| **rikdar** | inatçı | obstiné, têtu, entêté | obstinate, stubborn |
| **rîşik** | saçak | frange | fringe |
| **saman** | zenginlik, rahatlık, divan | richesse, confort | wealth , comfort |
| **sergirdan:** sergerdan | başı dönen, sersem | qui a la tête qui tourne, ivre, grisé | giddy, perplexed, bewildered, stunned, drunk |
| **sernijdevan** | akıncı başı, çete başı | chef de bande | chief raider, gang chief |
| **serpilkî** | yüzeysel olarak | superficiellement | superficially |
| **sîngtalde** | damlarda kurulan dalda | abri, muret ou cloison construit sur le toit plat des maisons où l'on dort l'été pour se protéger de la vue | shelter, wall or partition on the flat roof of a house behind which one can sleep, in summer, out of sight |

# Devoka Qerejdaxê

## — III —

*Amadekar* : Mehmûd LEWENDÎ

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| hicimîn | hafif aksamak | boiter légérement | to limp, to hitch slightly |
| hîm; xîm | temel | fondation, fondement | foundation |
| hînd | bir çeşit döğüş horozu | une variété de coq de combat | a type of fighting cock |
| hirço-pirço | dağınık, birbirine karışmış tüy veya ip gibi şeyler | emmêlé | tangled |
| hirhop | hoppala ! | vas-y saute ! | now then, jump!, what an idea |
| hirhop | hoppa | écervelé, frivole | flighty, fop |
| hirîşo | yün yıkayan | lavoir de laine | wool washer |
| hîro; hêro, xêrî | hatmi çiçeği | rose trémière | hollyhock |
| histirî: stirî | diken | épine, écharde | thorn, spine |
| histirîbirk | dikenli bitkileri biç-mekte kullanılan alet | instrument servant à couper les épineux | tool for cutting thorny plantns |
| histûn: stûn | direk, sütun | colonne, mât, pilier | column, pillar, mast |
| histûr: stûr | kalın, kaba | gros, grossier | thick, coarse, rude |
| histûrî kirin | kabalık etmek | se comporter d'une manière grossière,arrogante | to behave in a rude way, with arrogance |
| hît; çûr | tiftik keçisi | chèvre d'Angora | Angora goat |
| hîvastin: hevrêstin | örgüyle onarmak | repriser | to darn |
| hîz; eyarê rûn | yağ tulumu | outre à beurre en peau d'agneau ou de brebis | lambskin for storaging butter |
| hoç kirin | kalkmak (çocuk dilinde) | se lever (dans le langage enfantin) | to get up (baby talk) |
| hogirî hev bûn | birbirine alışmak | s'habituer l'un à l'autre, s'accoutumer l'un à l'autre | to get used to one another |
| hogirî qumarê bûn | kumar alışkanlığı edinmek | prendre l'habitude du jeu | to get used to a game |
| hol kirin | harman dövmek, harman sürmek | battre la moisson | to thresh |
| hol: hor | 1) harman dövme, harman sürme işi, 2) harman sürme sırasında harmanı daha çabuk sürmesi için hayvana söylenen söz | 1) battage 2) allez ! (pour les bêtes de battage) | 1) threshing 2) go! goahead (for the threshing animals) |
| holbûn | şıçramak, fırlamak, zıplamak | bondir | to leap, to jump |
| hutik; kulm, gumsik, mist | yumruk | poing, coup de poing | fist, blow with a fist |
| îpilme | ruam hastalığı | vet. morve | glanders |
| îs, îsik, errik | hayret ifade eden bir ünlem, vay be, abo | oh là là !, interjuction d'étonement | oh dear ! |
| îsk-îsk: îskeîsk | hıçkırma | sanglot | sob |
| îskîn | hıçkırık, hıçkırma | sanglot | sob |

| | | | |
|---|---|---|---|
| îspat, îspatî | iskambil kağıtlarında «sinek» | carte, trèfle | clubs (cards) |
| jan | sızı, acı | mal, douleur | ache, pain |
| jan dan | sızlamak, acı vermek | souffrir d'un mal, éprouver des douleurs | to ache, to suffer sharp pain |
| jardadayî | zehirlenen, zehirlenmiş | empoisonné | poisened |
| jardadayî kirin | zehirlemek | empoisonner | to poison |
| jirra; birra, bi rastî | sahi | vraiment | really, truly |
| kadiz | samanyolu | voie lactée | the Milky Way |
| kakil | ceviz, badem gibi yemişlerin içi | cerneau (de noix, d'amande), pas mûr, | halved walnuts, almonds or fruit |
| kal | yetişmemiş, ham | vert (fruit) | unripe, immature, green |
| kalo: xalxalik | uğur böceği | cochenille | ladybird |
| kalome | eski bıçak veya kılıç | vielle lame (de couteau, ou d'épée) | old blade (of knife or wsord) |
| kalşwîv | nadas süresi bittikten sonra sürülüp ekilen tarla | champ labouré après une période de jachère | tilled or ploughed field after a fallow period |
| kamaş | kalitesiz tütün | tabac de rebut, de mauvaise qualité | bad quality tabacco |
| kanîn: karîn, şiyan | yapabilmek, edebilmek | pouvoir | to be able |
| kapik: pêwend | şerit, kemend | corde | lasso, rope |
| kapol | ufak ve toz halindeki saman | fétu de paille | chaff, cut straw |
| karî, kardî | pazı | | chard |
| kawuk | aval, saf | simplet, simple d'esprit, naïf naïveté, | simpleton, fool |
| kawukî | avallık, saflık | simplicité d'esprit | feeble mindedness |
| kayik | geviş | rumination | rumination |
| kedî | evcil | apprivoisé, domestique | domesticated, tamed |
| kedik | küçük ayran tulumu | petite outre à petit-lait en peau d'agneau | small lambskin for storaging buttermilk |
| kefkefk: kefkefok | sabun otu | saponaire | soapwart |
| kel û kût; kal û kût | uyuz, sakat topluluğu, işe yaramayan, değersiz | bande, d'éclopés | bunch of worthless people |
| kelmîzek, kelmo, kelmisk, mîzek, şetek | altını ıslatan kimse, işeyen | incontinent (d'urine), énurétique | incontinent, enuretic |
| kelmîzekî | işegenlik | énurésie, incontinence | enuresis, incontinence |
| kelxwî; kelxweydan | aniden gelen terleme | sueur soudaine | sudden sweat |
| kun | keçi derisinden su tulumu | outre à eau faite de peau de chèvre | goatskin for water |
| lîçik; lîk, çilm | sümük | morve | mucus (of the nose) |
| lîço; lîko, kilmîso | sümüklü, devamlı sümüğü akan | morvœux | slimy, snivelling |
| likîn | melemek (keçiler için) | bêler, chevroter | to quaver, to bleat |
| likumîn | sendelemek | trébucher | to totter, to stagger |
| lîrandin: lîlandin, tilîlî kirin | zılgıt çekmek | pousser des you-yous, des cris de joie d'encourgement | to screans trilling cries of joy |
| lod | saman veya ot yığını | meule de foin, ou de paille | stack of hay or straw |
| londer | bir yığın, bir sürü, pekçok | tas, amas | pile, heap |

# TERMÊN HIQÛQÎ

— VI —

*Amadekar* : Veysi ZEYDANLÎ

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| **dayîn**, *n* | ödeme, tediye | paiement | payment |
| **dayîn**, *l* | ödemek | payer | to pay back (a debt) |
| **deyn dayîn** | borç ödemek | payer une dette | to pay back a debt |
| **fît bûn** | ödeşmek | être quitte avec quelqu'un | to settle accounts (with one another) |
| **gilîname** | şikayetname | plainte écrite | written complaint |
| **gilîdar** | şikayetçi | plaignant, demandeur | complainant, plaintive |
| **gilîlêkirî** | şikayet edilen | défendeur | defendant |
| **balkişandin** | ihtar, ihtar etme | avertissement | warning |
| **balkêşname** | ihtarname | notification, avis d'avertissement | official warning |
| **bal kişandin** | ihtar etmek | avertir | to warn |
| **mikur, mikur hatin** | ikrar, ikrar etme | aveu | avowal |
| **li xwe mikur hatin** | ikrar etmek,ikrarda bulunmak | avouer, faire des aveux | to admit, to confess |
| **venasîn**, *n* | itiraf | confesser, reconnaître | to confess, to admit |
| **rave** | açıklama,izahat, yorum | explication, commentaire | explanation, comment |
| **rave kirin** | açıklamak, izah etmek | expliquer, commenter | to explain, to comment |
| **made** (ji pehlewî *madeg*) | madde | article | article |
| **xal** | fıkra | paragraphe | paragraph |
| **bend** | bend | alinéa | paragraph |
| **rêxistin** | teşkilat, örgüt | organisation | organization |
| **pardar, pişkdar, behrdar** | hissedar | actionnaire | shareholder |
| **beşdarî** | iştirak, katılım | participation | participation |
| **hevbeş** | müşterek | commun | common, joint |
| **jicihrakirin** | sürgün | exil, déportation | exile, deportation |
| **jicihrakirî** | sürgün, adj. | exilé, déporté | exiled, deported |
| **ji cih rakirin** | sürgün etmek | exiler, déporter | to exile, to deport |
| **desteserî** | hacız | saisie | distraint, seizure |
| **desteserkirin** | haczetme | saisie | seizing, distraining |
| **desteser kirin** | hacz etmek | saisir | to distraint, to seize |
| **desteserkirî** | mahcûz | saisi(e) | distrained, seized |
| **destdanînserî** | zabt | mainmise, prise | seizure |
| **destdanînser** | zabtetme | mainmise | seizuring |
| **dest danîn ser** | zabt etmek | prendre, conquérir | to conquer, to take |
| **jêstandin** | müsadere | confiscation | confiscation |
| **jê standin** | müsadere etmek | confisquer | to confiscate |
| **jêstandî** | müsadere edilmiş | confisqué | confiscated |
| **diyarkirin** | belirleme, tayin | détermination | determination |
| **diyar kirin** | belirlemek | déterminer | to determine |
| **diyarker** | belirleyici | déterminant | determinant, determining |
| **diyarkirî** | muayen, belirlenmiş,belirli | déterminé | determined |

# Çend pirsên rastnivîsînê

**Reşo ZÎLAN**

**PIRSA PARASTINA KOKA PEYVÊ :**

Herwek gelek zimanên din, di zimanê axaftinê yê zaravayê kurmancî de jî, peyv li hin deveran têne kurt kirin. Di dema bilêvkirinê de ji koka peyvan hin deng, nemaze dengên hin tîpên dengdar, têne daqurtandin. Yan jî ew cihên xwe bi hinekên din re, gelek caran bi riya tewangê, pev diguhirînin. Carina guhartinên wisan mezin dibin, ku mirov nema dikare koka peyvê binase û ji wê tevliheviya ku peyv duçar bûyê, koka peyvê zelal bibîne.

Ji xwe, ferq û cihêtiya di navbera zimanê axaftinê û yê nivîsînê de ew e, ku mirov bi riya zelal xuyakirina peyvan riyê li ber tevliheviyê digire. Bi risteke birêkûpêk, bi nivîskî, pêşçavkirina peyvan riyê li ber çavên xwandevanan xweş dike, da ku ew bêî zor û astengiyekê peyvan nas bike û naveroka hevokê xweş têbigihê.

Helbet feyde û kelka zimanê nivîskî ne bi tenê ev e. Di gel çendîn diyardeyên din, ew rê li ber sergêjiyên devokî jî digire û dibe ho û sedemên afirîna zimanekî standart û xwedînorm. Heçî ev rûyê han ya pirsê ye, ji bo me girîngtirînê ho û sedeman e. Ango em çawan bikin û di nivîsarên xwe de bi çi rengî têbikoşin, ku riyê li ber sergêjiyan bigirin. Çawan hewil bidin da ku zimanê me jî ji aliyê nivîsînê ve bibie xwedînorm û standartekê.

Ji ber vê yekê jî, hewce ye, ku em bala xwe bidin hin qaîde û bingehên rastnivîsînê. Bê guman, ev qaîde û bingeh, li ser bingehên rêzimanê bejin didin. Bêî ku mirov bingehên rêzimana zimanekî bide ber çavan, danîna stûnên rastnivîsîna zimanekî jî ne mumkun e. Li milekî din, pirsa rastnivîsînê ne bi tenê pirseke xweser ji bo zimanê me ye. Lê îro zimanên gelekî pêşdeçûyî jî bi van pirsan mijûl dibin. Lê helbet ne bi qasî me...

Bi kurtî, di warê nivîsînê de, divê em guh bidin parastina kok û qurmên peyvan. Di nav hevokê de, di tewangan de, li kû dibe bila bibe, jê tîpan kêm nekin. Ser û guhên wê neşikênin û dest nedin kok û qurma wê. Bihêlin ew li ser qurma xwe bimîne û welê tişt lê zêde bibin. Bo nimûne:

Li hin deveran, di zimanê axaftinê de dibêjin:

*«Ez ê perdekê/perdakê bikirim»,*
*«Navê zavê me Mendo ye»,*
*«Zarok li aşxanê ne»*

û hwd.

Herwekî di van nimûneyan de jî diyar dibe, ji koka peyvan tîpin hatine kuştin. Peyv hatine kurt kirin. Ser û guhên pirtikên tewangan hatine şikandin. Dibe ku mirov di dema axaftinê de têbigihê, ku merama hevokê çi ye. Lê heçî ji aliyê analîtîk ve lêhurnêrîn e, bi me xuya dibe, ku li gor cihên peyvan yên di hevokê de, di tewangên peyvan de nesazkariyeke mezin heye.

Em nikarin ji peyvên *«perdekê/perdakê»*, *«zavê»* û herweha *«aşxanê»* kok û tewangan ji hev derxînin. Ji ber ku koka rastîn *«perde»*, *«zava»* û *«aşxane»* ye û tewangên wan jî *«-yekê»*, *«-yê»* û *«-yê»* ne. Ango divê bibe *«perdeyekê»*, *«zavayê»* û *«aşxaneyê»* da ku em bikaribin laş û seriyên wan bibînin û wan ji hevûdu cihê bikin. Dibe ku kurtkirina wan, ji hin kesan re xweştir be û bilêvkirinê gengaztir bike. Lê heçî ji bo nivîsînê ye, bi taybetî jî ji bo ferhengnivîsiyê (leksîkografî) ev celeb nivîsîn sergêjiyên bêderman diafirîn.

Ji lewre jî, divê em bal û dêna xwe baş bidin parastina kok û tewangan û wan di nivîsînê de, herwekî ku pêdivî ye, binivîsin. Çend nimûne:

*Ez dê sibehî ji bo serdanê herim* ***nexweşxaneyê****.*
***Zavayê*** *mala Berwariyan ji gund vegeriya.*
*Me ji bo odeya rûniştinê* ***perdeyên*** *spehî kirîn.*
***Peyayên*** *axayê me* ***belaya*** *xwe bi me didin.*
***Jinbirayên*** *min ne ji mermalên me ne.*
*De em herin* ***baxçeyê*** *cîranê me.*
*Diya min cotek* ***goreyên*** *rîsînî dane min.*
*Zarokan* ***çanteyên*** *xwe `ecibandin.*

**PIRSA TEWANDINA HIN NAVAN :**

***A) Navên kovar û rojnameyan***

Heçî pirsa tewandin yan jî netewandina navên kovar û rojnameyan e, girêdayî pirsekê ye. Ew jî, heke navê kovar û rojnameyê ji navdêrekê pêk hatibe, yan jî heke navê wê bi navdêrekê dawî bêt, divê ew wek navdêrên xwedîzayenda mê bête tewandin. Wek:

*Min ew di vê hejmara* ***RONAHÎyê*** *de xwand.*
***SERXWEBÛNê*** *li ser wê pirsê dinivîsand.*
***DENGÊ KOMARÊ***
***DENGÊ AZADIYÊ***
***RIYA ŞOREŞÊ***
***DENGÊ KURDISTANÊ***
***ARMANCê*** *ew wêne weşandibû.*
*Wî ji bo* ***ÖZGÜR ÜLKEyê*** *dinivîsî.*
*Di kovara* ***NOKTAyê*** *de roportajek heye.*
*Wî di rojnameya* ***AKŞAMê*** *de bendek nivîsîbû.*
*Ez nûçegihanê* ***MORGONPOSTê*** *dinasim.*
***LE MONDEê*** *li ser şerê birakujiyê nivîsiye.*
***DAGENS NYHETERa*** *swêdî rojnameyeke rojane ye.*
***THE GUARDIANê*** *li ser wê pirsê raporeke piralî weşandiye.*
***KEYHANê*** *ew nivîsîbû.*
*Ew hîn jî di* ***EL-CÛMHÛRIYEyê*** *de kar dike.*
*Wî ew nûçe ji* ***ÎZVESTIYAyê*** *veguhastibû.*

Lê heke navê kovar yan jî rojnameyê, ji navê êl û `eşîrêkê yan jî herêmekê pêk hatibe, yan jî bi navekî wisan dawî bêt, ew nahête tewandin. Ji ber ku, di zimanê me de, navdêrên ji navên êl û `eşîran pêkhatî, eger bûbin navên herêman jî, ew çu caran nahên tewandin. Bo nimûne:

*Ez nikarim* ***DENGÊ MUKRIYAN*** *guhdarî bikim.*
*Ew nivîsar di* ***DENGÊ METÎNAN*** *de belav bûye.*
*Kovara* ***BOTAN*** *bi tîpên latînî derdiket.*

Herweha, eger navê kovar yan jî rojnameyê ji rengdêrekê pêk hatibe, yan jî bi navekî wisan biqede, ew nahête tewandin. Ji ber ku, di zimanê me de rengdêr çu caran wek navdêran

nahên tewandin. Wek:

*Di kovara **ROJA NÛ** de çîrokeke wî heye.*

*Di **STÊRKA SOR** de wêneyek hatibû weşandin.*

*Di **KURMANCÎ** de babetên helez derdikevin.*

***B) Navên herêman***

Herwekî tête zanîn, di zimanê me de, zayenda navên coxrafîk hemû mê ne. Ji ber vê yekê jî, gava ku ew di hevokê de yan jî weke din tên tewandin, divê li gor qaîdeya navdêrên mê bên tewandin. Wek:

*Ez çûbûm **BERLÎNê** û ji wir jî çûbûm **HELSÎNKÎyê**.*

*Ew duh ji **MÛŞê** ber bi **AMÊDÎyê** bi rê ket.*

Ji van nimûneyan jî xuya dike, ku divê navên coxrafîk, li gor tîpên ku nav pê diqedin, divê pirtikên tewangê werbigrin. Ew jî, eger nav bi tîpên bêdeng biqedin, «*-ê*» û eger bi tîpên dendar biqedin, «*-yê*» ne.

Lê di kurdî de hin navên herêman hene, ku ji navên êl û `eşîran, yan jî ji rengdêrekê çêbûne.

Bo nimûne :

**Botan**, ango herêma Botîyan. Devera ku Kurdên Botî lê dijîn. **Mukriyan**, ango herêma Kurdên Mukrî. Devera ku Kurdên Mukrî lê dijîn. **Behdînan**, **Soran**. **Germiyan**, ku ji hawîrdora Kerkûkê re û **Serhedan**, ku ji bakûra rojhelata Kurdistana Tirkiyê re tête gotin. Hin nav jî hene ku ji du navan çêbûne. Wek: **Dola Şehîdan**, **Newala Guran**, **Girê Sîran**, **Geliyê Zîlan**, **Çiyayê Bêxêr**, **Kevirê Reş** û hwd.

Heçî ev qaîdeya jorîn e, ji bo nevdêrên ku ji navên êl û `eşîrekê, ji du navan û yan jî ji rengdêrekê pêkhatî derbas nabe. Ji ber ku ew navdêr berî her tiştî ji pirhejmarekê pêkhatine û ev yeka han jî cureyek tewang têtê hesêb û nabe ku ew careke din bête tewadin. Wek :

*Şerek li herêma **BOTAN** derketiye.*

*Kurdên **BEHDÎNAN** wek me naaxivin.*

*Zerê çûbû **GELIYÊ ZÎLAN** û lê geriyabû.*

*Mîrê **SORAN** serî li ber dijmin neçemand.*

*Pêşmerge ji **DOLA ŞEHÎDAN** derneketine.*

*Hevalê min ji gundê **QESRIKA PIÇÛK** e.*

*Wî ji **DAREBIYA JORÎN** bar kiriye.*

*Serek Clinton ew di **KOŞKA SPÎ** de kiribû mêvan.*

*Ew duh ji **DELHIYA NÛ** vegeriya.*

Lê ji piraniya wan navdêran rengdêr têne afirandin. Wek: Ji Soran; **Soranî, Sorî**. Ji Botan; **Botanî**, Botî. Ji Behdîndan; **Behdînanî**, **Behdînî**. Ji Mukriyan; **Mukriyanî**, **Mukrî**. Ji Serhedan; **Serhedî**, Ji Germiyan; **Germiyanî** û hwd.

Divê bête gotin, ku hindek navên din yên coxrafîk hene, ku navên hevedudanî ne. Piraniya wan ji nevdêr û rengdêrekê pêkhatî ne. Divê ew li gor qaîdeyê bêne tewandin. Bo nimûne:

*Ez ji gundê **BERDEREŞê** me.*

*Mala me hê jî li **AVŞÎNê** ye.*

*Mala me ji **MÊRGESORê** derketiye û çûye bajêr.*

## PIRSA BIKARANÎNA NÎŞANA *BIHNOKÊ* Û *KU*

Berî her tiştî divê em bêjin, ku ne bi tenê maneyek lê çend maneyên peyva ***KU***yê hene. Ji bo zelalkirina vê pirsê hewce ye, ku em berê wan çend maneyên ***KU***yê bidin zanîn û pişt re vegerin ser pirsa bikaranîna nîşana bihnokê.

Maneyên peyva ***KU***yê, li gor ka ew ji kîjan perçeyên axaftinê têne hesêb, têtê guhartin. Maneyeke peyva ***KU***yê, ku gihanek be, «eger, heke, heger, herke, hek û ger» e. Di zimanê axaftinê de, li hin deverên Kurdistanê ***KU***yê bi vî rengî bi kar tînin û vê maneyê didinê. Maneya didwan, ***KU***ya ku di gel piraniya lêkeran û maneyeka dawîn jî, ku pronav be, ***KU***ya ku di gel nav û navdêran têne bi kar anîn e.

Heçî ***KU***ya ku wek gihanek di maneya «***eger***»ê de ye, bi vî rengî ye:

***Ku** Baran neçûya sînemayê, dê me hevûdu bidîta.*

***Ku** tu neçî, telefonî min bike.*

***Ku** berf barî, em ê perîşan bibin.*

Ango di şûna ku peyva «***eger/heke***» bête gotin, ***KU*** hatiye bi kar anîn û merama gotinê qenc têtê têgihîştin.

Lê ***KU***ya ku wek pronav e, bi vî awayî ye:

*Gulbîna **ku** te dîtibû, xwîşka min e.*

*Karzanê **ku** nexweş ketibû, hîn pak nebûye.*

*Gulên **ku** me tovên wan reşandibûn, hêşîn bûne.*

*Kesên **ku** te duh dîtibûn, mermalên me ne.*

Ev ***KU***yên ku li vir hatine bi kar anîn, hemû jî ji bo veqetandin û ferqêxistina navbera du yan jî çend tiştan e. Yan jî ji bo bêtir balkişandina ser tiştekî ye. Ji ber vê jî, ***KU***yên jorîn, hertim di gel pirtikên «***-an, -ê, -ên***» hatine bi kar anîn. Ango, ji bo manedayîna «***ya ku, yê ku, yên ku***» ye.

Heçî ***KU***ya din e, ew hertim di gel lêkeran têtê bi kar anîn. Pirsa me ya di nivîsînê de rast bikaranîna nîşana bîhnokê jî bi vê deqê ve girêdayî ye.

Di nivîsînê de, divê em bîknokê daynin berî vê ***KU***ya ku em bi lêkeran re bi kar tînin. Ne ku piştî ***KU***yê. Wek:

*Ew di benda xwe de dinivîse, **ku** Bilind bi vî karî rabûye.*

*Ez dibînim, **ku** tu ne li ser riya rast î.*

*Ez bawer dikim, **ku** dê karê me sibehî kuta bibe.*

*Doktor digot, **ku** divê tu hertim guh bidî tenduristiya xwe.*

*Min şîva xwe xwar, **ku** ez dermanên xwe bixwim.*

*Ew çû bajêr, **ku** ji me re hin hûrûmûran bikire.*

Carina, di hin hevokan de, bîhnok dikare bête berî ***KU***ya ku pronav e. Bo nimûne:

*Desteyek hevalên me, **ku li gundê Kanîmasiyê bûn**, di vegerê de rastî çend serbazên Tirk hatin.*

Heke mirov ji vê hevokê perçeya ***ku li gundê Kanîmasiyê bûn*** derxîne jî, di maneya hevokê de çu guhartineke mezin nabe. Ji ber ku hevoka sereke dimîne û tê de kêmasiyeke gelekî mezin peyda nabe û bi tenê zanyariyeke piçûk ji hevokê derdikeve.

Ji milekî din ve, gava mirov hevokê dixwîne, mirov bi xwe jî dibîne, ku berî ***KU***yê rawestîn û piçekî bêhnvedan gerek e. Ji xwe nîşana bîhnokê jî her ji bo vê yekê ye.

# Îdyomên kurdî

*Amadekar* : **Hemîd KILIÇASLAN**
**Mustafa AYDOGAN**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| **aşê betalan** | aşırı konuşan | moulin à paroles | chatter box |
| **aşê hawarê, aşê nokan** | doymak bilmeyen, sürekli yiyen | insatiable, goulu | greedy, gluttonous |
| **agir bi erdê keve gurzek pûşek wî naşewite** | ilgisiz, lakayt,gamsız | indifférent, insouciant | indifferent, have been struck by lod of strokes |
| **agir bi serê me ketiye** | başımıza bir bela geldi | un malheur s'est abattu sur nous | we have had a stroke of bad luck |
| **agir li me bariyaye** | büyük bir musibetle karşılaştık | une grande calamité nous est arrivée | we have been struck by a disaster |
| **agir xistiye dawa xwe:** li fesadî û belaye digere | bela satan, nifak, kavga arayan | il sème discorde et cherche querelle | he is looking for (making) trouble |
| **agir di çava de ye** | gözü kan bürümüş | il voit rouge | he sees red |
| **agir ji ber diçe:** agir jê dibare; agir ji dêv dibare, agir ji dêv diçe | ateş püskürüyor | il est très en colère | he is spitting fire, he is very angry |
| **agir ketiye** | 1) paniğe kapılmış, 2) azmış, azgın | 1) paniqué, exacerbé, 2) très excité, féroce | 1) panic-stricken 2) very agitated |
| **agir li ber kulîna xwe dada:** mala xwe bi destê xwe xera kir | evini kendi eliyle yaktı | Il a causé son propre malheur | he caused his own misfortune |
| **agir tê de bûn** | (cinsel) ateşli | avoir le feu au cul | having ants in the pants |
| **agirê li heriyê diçe** | etkinliği yok, etkisiz, verimsiz | inefficace, improductif | inefficient, unfruitful |
| **agirê pûş** | saman alevi | feu de paille | quick, passing, flame or passion |
| **agirê qoçan,** | kütük ateşi (tecrübeli yaşlı kimseler için) | peronne âgée et expérimentée | old and experienced (person) |
| **agirê qurman** | kalıcı ateş | feu de souche, feu durable, persévérant dans son action | slow burning, persistant, lasting, fire or passion |
| **agirê Xwedê** | 1) çok çalışkan, çok becerikli, ateş gibi 2) azgın, inatçı | agile, vif, intelligent | agile, intelligent, very quick |
| **alifê vala** | 1) çocuk yapamayan, kısırlaşmış kadın 2) başı olmayan ev, aile | 1) femme qui ne peut plus enfanter 2) famille sanschief | 1) a woman who is past child-bearing 2) family without a chief |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **aqil berdan** | kafayı takmak, sevdalanmak | être obsédé par | to be obsessed by |
| **aqil bi ser kum ketiye** | aklı havada | qui a la tête dans les nuages | scatterbained head in the clouds |
| **aqilê sivik, barê giran** | baş belası, | casse-pied, | irritating, pestering, |
| **ardê cehînî** | 1) bitmek bilmeyen 2) kalitesiz | collant | a pest |
| **arvanê sala teng;** arvanê sala xerab | kara gün dostu | ami des jours d'adversité, ami fidèle | faithfully friend, friend of hard times |
| **arvanê xwe li êş kir;** a xwe got; got ez jî heme | boş konuştu, o da ağzını açtı | il a dit son mot aussi | he also has said his word |
| **asasê ser berfê: xîma ser cemedê, xîmê ser avê** | temelsiz, kum üzerinde kurulu (şato) | sans fondement, bâti sur la neige | baseless, unfounded built on snow |
| **av di gunikên wî de wergeriyaye: av li şekokên wî geriyaye:** balix bûye | ergenleşmiş, ergenliğe ulaşmış | il est devenu pubère, il a atteint la puberté | hi has reached puberty |
| **av li ser xwe zelal kir** | sessiz kaldı, izini kaybettirdi | il est parti pour revenir vite, mais n'est pas revenu | he bas gone for a a short time but he is not back |
| **ava bin kayê:** kesê ku tiştên xwe bi dizî | içten hesaplı, sinsi | calculateur, sournois | crafty, cly calculating |
| **ava buhurekî; pîvazê mişarekê ;** ji eynî malî | aynı bezin parçası | de même eau, du même acabit | in the same style, of the same type |
| **av ji dev çû;** gilêz ji devê wî hat | ağzının suyu aktı | ça lui a mis de l'eau dans la bouche | it made his mouth water |
| **ava qûna cêr :** çi qenciyê pê dike, bê feyde ye | beyhûde emek | vain effort | wasted effort |
| **ava reş bi çavan de hatin:** kor bûn, nedîtin | görmemek | être aveugle | to be blind |
| **ava serî germ kirin** | suyunu ısıtmak | préparer la fin de quelqu'un | plot someone's end or downfall |
| **ava rû:** abrû, **avrû:** heya | haya | vergogne | shy |
| **ava rû teqandin** an **qetandin** | hayasızlaşmak | devenir effronté, sans vergogne | shameless, become shameless |
| **avpizavî kirin:** ji bo zarok an pezên ku ji ber nexweşiyê xwarin naxwin tê gotin | iştahsızlaşmak, hastalık nedeniyle yemek yemeyen çocuk ya da hayvan için söylenir | perdre l'appétit se dit d'enfants ou d'ovins n'ayant pas d'appétit pour cause de maladie | to loose one's appetite said for children or sheep who have has lost their appetite through illness |
| **aviya kulîlkê:** yek li pey yekî çû û nehat avî çûyin | ardı ardında gidip gelmeden kaybolmak | aller un à un à la recherhce de quelqu'eun et ne pas revenir | to go one by one tech s.o. and not to come back |
| **ax bi çavan ketin** | hayıflanmak, kaçırılmaması gereken fırsatı kaçırmak | déplorer une belle occasion ratée | to regret missing a good opportunity |
| **axa bin gû:** bi kêrî tu tiştî nayê | hiç bir işe yaramayan, değersiz | vaurien, vil, sans valeur | good for nothing, worhless |
| **axurê xwe xera kirin:** bi nanê xwe leyistin | bindiği dalı kesmek, çıkarına aykırı hareket etmek | couper la branche sur laquelle on est assis, agir contre ses intérêts | cutting one's own throat, acting against one's own interests |

hejmar 20 payîz 1996

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravê kurmancî

*Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan*
*Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan*

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## SIMBÊL

(t) Bıyık (f) Moustache (e) Moustache



simbêl**boq**

**Rengên simbêlan**

1- simbêlê **sor**
2- simbêlê **reş**
3- simbêlê **kizirî**
4- simbêlê **hennekirî**
5- simbêlê **kerteboz (qerteboz)**

## Civîna Biskops Arnöyê ya 20emîn

Civîna 20emîn ya *Kurmancî* li Biskops Arnöyê (Swêdê) di navbera 13-20. 10. 1996an de çêbû. Di vê civînê de kesên beşdar li ser termên aborî, termên hiqûqî, devoka Qerejdaxê, îdyomên kurdî, cureyên simbêlan, ferhengoka *Roja Nû* û *Hawarê* xebitîn.

Di vê civînê de Mistefa Aydogan (Mêrdîn), Lutfî Baksî (Xerzan), Rojen Barnas (Diyarbekir), Abdullah Emîn Bêtasî (Behdînan), Salim Çeliker (Diyarbekir), Elîşêr (Wan), Rojan Hazim (Hekarî), Selam Nouman (Cizîrê), Mûsa Kaval (Hekarî), Hemîd Kiliçaslan (Mêrdîn), Mehmûd Lewendî (Qerejdax), Kendal Nezan (Diyarbekir), Zinar Soran (Dêrik), Behroz Sucaî (Şikak), Veysi Zeydanli (Bidlîs), Reşo Zîlan (Agirî) û Zeynelabîdîn Zinar (Batman) beşdar bûn.

# Çend pirsên rastnivîsînê

Reşo ZÎLAN

### Pirsa rastnivîsîna navên mirovan

Heçî pirsa rastnivîsîna navên mirovan e, ne bi tenê di zaravayê kurmancî, lê bi awayekî giştî di zimanê kurdî de, bi rastî jî, pirsgirêkeke mezin e. Mezinbûna pirsgirêkê ne bi tenê ji hebûna hinde zarava û devokên kurdî ye. Lê, berî her tiştî, ji tunebûna lêkolînên hûr û kûr yên fonolojîk (dengnasî) e, ku bi me nîşan bide ka li kû û dengên çilo hene. Hevpişkiya wan li kîjan deveran û di navbera kîjan zarava û devokan de hene. Ka guhirîna hin dengan çawan pêşde tên û herweha bandora dengên hin zimanên biyanî û cînar yên li ser zimanê me çi ne û hwd. Di gel vê yekê, nivîsîna kurdî bi çend alfabeyên têvel jî welê dike ku astengên heyî hê mezintir bibin. Zaravayên kurdî yên ku ketine nivîsarê jî, ji danîna hin normên zelalkirî bê par in. Ji lewra jî her kesek li gor kêfa xwe, a rastî jî li gor zimanê ku wî xwe pê kiriye xwande û bi xurtî ketiye bin bandor û tesîra wî, riyeke rastnivîsînê daye ber xwe.

Em ê di vê nivîsarê de zêde li ser pirsên dengan ranewestin. Lê, hewce ye ku em bi kêmanî piçekî li ser pirsa alfabeyên ku kurdî pê têne nivîsîn, rawestin. Ew alfabe jî, sê alfabe ne; *kîrîlî, 'erebî* û *latînî.*

Ji van, heçî alfabeya kîrîlî ye, êdî ber bi mirinê diçe. Nema wek berê tête bi kar anîn. Lê bê guman edebiyateke dewlemend ya zaravayê kurmancî pê hatiye nivîsîn. Piştî nemana Sovyetistanê, ew hêdî hêdî ji meydana nivîsînê winda bû. Cihê xwe ji alfabeya latînî re hişt. Dîsan jî, ji ber ku edebiyata ku bi kîrîlî derdiket, hema hema qet dernediket derveyê Sovyetistanê, ku bêtir piştî salên 1970yî giha destên Kurdên derveyê Sovyetistanê, rê û awayên rastnivîsîna wê çu bandor û tesîr li ser kurdiya bi tîpên latînî û 'erebî nekir. Rê û awayên rastnivîsîna wê, ku ketibû bin bandora rê û awayên rastinivîsîna zimanê rûsî, her di nav Kurdên Sovyetistanê de bi kar hat. Ji xwe ne mumkun bû ku ew bibe alfabeyeke giştî ji bo hemû Kurdan û bi vî rengî ji aliyê wan ve jî

bête bi kar anîn. Ji lewra jî, di warê rastnivîsîna navên mirovan de, tiştekî ku mirov tê de wek sûdbexş bibîne, tune ye. Di vî warî de, pirsên ku ew tîne pêş her eynî pirsgirêk in, ku ji aliyê taybetmendiya xwe ve, di nivîsîna alfabeya 'erebî de hene. Ji ber vê yekê jî, em ê her yekser dest biavêjin alfabeya 'erebî û pir bi kurtî li wan hûr bibin. Çi ne ev taybetmendî? Berî her tiştî, divê em bidin zanîn, ku sîstema alfabeya kîrîlîk û nivîsîn û rastnivîsîna wê û ya 'erebî, ji hev dûr in. Lê, bi tenê di warê rastnivîsîna navên mirovan de (herweha navên coxrafîk û hwd jî) hevpişkiyeke mezin di navbera herdû alfabeyan de heye. Ango di herdukan de jî nav li gor bilêvkirinê, ne ku li gor orjînalê têne nivîsîn. Hindek caran, ji ber tunebûna dengekî di wî zimanî de, bo nimûne dengê «H»yê di zimanê rûsî de û dengên wek Ç, F, G, J, P, V û hin dengdarên din di zimanê 'erebî de, dibe sedemê ku navên hinde mirovan bi rengekî din bête bi lêv kirin. Bê guman, alfabeyên modifîyekirî yên kurdiya kîrîlî û 'erebî, ji bo van dengan tîpên xweser danîne. Tevî vê jî, gelek caran navên bi riya van zimanan ketine nivîsîna kurdî ya bi alfabeyên kîrîlî û 'erebî, her wek xwe mane û li gor bilêvkirina xwe ya kurdî nehatine guhartin û nivîsîn.

Bi taybetî jî zimanê 'erebî hem bi riya dîn û hem jî bi riya alfabeyê gelek navên 'erebî, ku di nav Kurdan de mişe ne, wisan ku navên 'Ereb bi xwe li xwe nakin xistine nav Kurdan û di nav Kurdan de bûne navên birewac û normal. Herweha bi vê riyê dengên ne kurdî jî, yên ji kurdî re pir xerîb in, ketine zimanê kurdî û nivîsîna wê.

Baş e, gelo em Kurd di gel hinde dijwariyên heyî, pirsa rastnivîsîna navan çawan çareser bikin ? Bi a me, du rê hene li ber me. Ya yekê ew e, ku hema em bibêjin bila hemû li gor bilêvkirina kurdî bêne nivîsîn. Bêî ku em guh bidin orjînala wan. Heye ku ev rê ji bo gelek kesan cazibedar be û herweha kurdîkirina (kurdîfîzekirin) wan paqijî, zelalî, rewanî û rehetiyek be. Lê bê guman ev karekî zehf aloz û tevlihev e, ku heke mirov vê riyê bide ber xwe, ji bin derketina hin barên ku ev rê bi xwe re tîne û dike nivîsara kurdî, ne gengaz e. Ji bilî vê yekê, ev dê bibe sebeba îzolekirina ziman û herwisan xwe li derveyê pêşdeçûnên piralî hiştinê. Riya didwan jî ew e, ku dan ser riya navneteweyî û li gor rê û normên navneteweyî yên hevpişk pêkanîna rastinvîsîna navan e. Bi a me, dê rêçeke weha rê ji ziman re xweş bike da ku ew di qalibeke neteweyî de îzole nemîne û rê li ber hin tengbîniyan jî bigire.

Vêca pêdivî ye ku bête gotin, di warê nivîsîna navên mirovan de çend rê û normên navneteweyî yên hevpişk hene, ku zimanên tîpên latînî bi kar tînin ew ji rastinvîsa xwe re wek destûr danîne. Ew jî bi kurtî ev in: Zimanên ku alfabeya latînî bi kar tînin, navên ku bi alfabeya latînî hatine nivîsîn, weke ku ketine nivîsînê dinivîsin. Sadiqî orjînala wan dimînin. Eger di alfabeya wan de hin tîp tune bin jî, yan tîpa ku ji aliyê wêneya xwe ve herî nêzîk e yan jî tîpa ku ji bo dengê nêzîki wî hatiye danîn, bi kar tînin. Bo nimûne : Di gelek zimanan de tîpên «ö, ø, ä, å , æ, ë, ê, é, û, î, ş» û hwd tune ne. Ew di şûna wan de, tîpên ku nêzikî wêneyên wan in, wek «o, o, a, a, e, e, u, i, s» dinivîsin. Yan jî, ji bo dengê «ö»yê, «oe», ji bo dengê «ä» û «æ»yê, «ae» ji bo dengê «ü»yê, «ue» bi kar tînin. Li gor vê, divê em di nivîsarên kurdî yên bi tîpên latînî de navên wek: Izetbegovič —> Izetbegovic, Miša —> Misa, Åsa —> Asa, Göta —> Gota (Goeta) û Müller —> Muller (Mueller) binivîsin.

Herwek me got, divê em jî, di pirsa rastnivîsîna navên bi alfabeya latînî de sadiqî orjînala wan bimînin. Lê helbet ji bo rehetiyê di nav dukevanekê de bilêvkirina wan jî binivîsin. Bi vî rengî, navên ku ji aliyê nivîsînê ve gelekî çetin in, dikarin bi hêsanî bêne bi lêv kirin.

Dibe ku ev di destpêkê de gelekî zehmet bête xuya kirin. Lê, nemaze di vê dewranê de, dewrana ku teknolojiyê serê xwe hildaye û bi çargavî berê xwe daye deşt û rastên dawîtuneyî, divê em Kurd jî bizanibin ku ziman di çarçoveyeke teng de hew têtezîndan kirin. Divê em jî wek miletên din fêrî nivîsîn û xwandina navên biyanî bibin. Bizanibin ku guhirîna bi tenê tîpekê me tûşî sergêjiyên çendî mezin dikin. Bo nimûne: Navê -Corc-yê ewropî bi çend awayan tête nivîsîn; George, Georges, Georg, Gorge. Di qeyd, katalog, kompiyûter û fêhrist û hwd de li navê -Corc- gerîn û ew bi rehetî dîtin ne gengaz e, ku heke ew nav, nemaze orîjînala wî, weha bi çend awayên curbicur hatibe nivîsîn. Ev pirsa han ne bi tenê ji bo navên ewropî, lê ji bo hinde zimanên din jî hene. Di gel vê jî, hinde nav jî hene ku her weke nivîsandî têne bi lêv kirin.

Çend nimûne: George Bush (Corc Bûş), Richard Nixon (Rîçird Nîkson), Tom Jones (Tom Cons), Bill Cosby (Bîl Kosbî), Vaclav Havel (Vaklav Havil), Kofi Annan (Kofî Annan), Theodore Pangalos (Teodor Pangalos), Netanyahu (Netanyahû), Kengo Wa Dondo (Kengo Wa Dongo), Franz Vranitzky (Frantz Vranîtzkî), Roger Lescot (Rojê Lesko), Viollette (Vîyolêt), Berisha (Berîşa), Le Pen (Lö Pen).

Me divê em li vir bi têbîniyeke piçûk behs bikin, ku hinde nav hene ew di her zimanekî de bi rengekî têne nivîsîn û lê her zimanek jî wê li gor fonetîka xwe bi lêv dike.

Wek: Mayk (Mayk), Mike (Mayk), Mike (Mîk), Micke (Mîke), Mike (Mîke) û hwd.

Lê heçî navên ku ne bi latîni hatibin nivîsîn e, divê em jî li gor transkrîbsiyona wan ya navneteweyî binivîsin. Helbet gelek caran demûdezgehên wî welatî bi xwe li ser transkrîbsiyona navan, ku wê jî bi riya biryara zimannasên xwe û saziyên jê berpirsiyar, bi xelqê didin zanîn. Bo nimûne, Çînê berî çendsalekê norm û sîstema nû ya transkrîbsiyona navên çînî da daxuyanî kirin û got, ku ev cure transkrîbsiyona nû ya bi latînî nêzîktirê bilêvkirina orjînalê ye. Me divê hûn navên me yên çînî watov binivîsin. Welê jî bû. Êdî xelqê jî bi a wan kir û navên çînî li gor sîstema resmî ya transkrîbsiyona çînî nivîsandin. Jê çend nimûne: Deng Xiaoping (Deng Ksîyaopîng), Chang Kai-shek (Çîyang Kay-şek).

Ji aliyekî din ve, navên ji alfabeya kîrîlî, divê li gor bilêvkirina kurdî bên nivîsîn.

Wek: Nîkîta Xrûşov, Gorbaçov, Yêltsîn, Maksîm Gorkî, Aleksandir Lebed, Pûşkîn, Mayakovskî û hwd.

Heçî ji bo navên bi zimanê erebî ne, 'Ereb bi xwe negihane biryarekê. Navên 'erebî, di xebatên zanistî de, wek her zimanekî rojhilatê, bi alfabeya traskrîbsiyona zimanên rojhilatî dinivîsin. Lê di navnivîsîn û qeydan de, yan li gor alfabeya fransî yan jî ya îngilîzî dinivîsin. Welatên 'erebî yên ku ketibûn bin destên Îngilîzan, li ser transkrîbsiyona îngilizî, yên ku ketibûn bin destên Fransîyan, li ser transkrîbsiyona fransî dimeşin. Bo nimûne: Eger navê camêrekî Şukrî be û eger ew ji Sûriyê yan jî ji Cezayirê be, navê wî wek «Choukri/Choukry», na eger ji Îraqê yan jî ji Misrê be, navê wî wek «Shoukry/Shoukri/Shokry/Shokri» dinivîsin. Ji bilî vê, tevî ku 'ereb bi xwe navên xwe bi tîpên 'erebî bi rengên curbicur dinivîsin, her miletek jî wê li gor bilêvkirin û rastnivîsîna xwe dinivîse. Wek navê Mihemed, ku bi van çend awayan li qelemê didin: Mohamed, Mohammed, Mohamad, Mohammad, Muhammed, Mehmet.

Gelo em Kurd bi çi awayî binivisin? Divê em, çi navên 'erebî bin û çi jî yên farisî bin, ango navên ku traskribe dibin, li gor alfabeya kurdî binivîsin. Heçî navên ku 'erebî yan jî farisî ne, lê Kurd jî li xwe dikin û bi kar tînin, divê em wan li gor bilêvkirina kurdî binivîsin.

Ji bo têkneçûna zimanê me divê em bi xurtî hewl bidin ku nekevin bin bandor û tesîra zimanê neteweyên serdest û navan li gor rastivîsîn û bilêvkirina wan nenivîsin. Pêwist e em li vir bibêjin, ku Kurdên bakur di vî warî de nimûneyeke helez radixin ber çavan. Ew, di nivîsarên xwe yên kurdî de, navên wek Xumeynî, Mehmûd, Ferhad, Ehmed, Evdilezîz, Siltan, Belqîz, Zeyneb, û hwd, wek Humeynî, Mahmût/Mehmût, Ferhat, Ahmet/Ehmet, Abdulazîz/Ebdulazîz, Sûltan/Sultan, Belkiz, Zeynep dinivîsin. Ji bo kesên ku tirkî nizanin, pêdivî ye ku mirov şerh bike, ku di zimanê tirkî de, gotinên tirkî di halê xwe yê netewandî de, ji bilî hin awarteyan, divê çu caran bi bêdengên nerm dawî nehên. Ji ber hindê jî Tirk li gor destûra zimanê xwe nikarin bibêjin Ferhad, Zeyneb û hwd. Ji ber ku «D» û «B» ji bêdengên dengên nerm in. Divê ji dêlva wan bêdengên «T» û «P»yê bi kar bînin û bibêjin Ferhat û Zeynep...

Lê kurdî çi şol pê ye ! Divê kurdî li ser destûra zimanê xwe here, ne ya zimanekî din. Ew nav çawan li gor fonetîka kurdî dihêne bi lêv kirin wisan jî bihêne nivîsîn. Ji lewra, di warê rastinvîsîna navên ji zimanê 'erebî ketine kurdî de, me divê em çend nimûneyan berpêş bikin. Navên ku bi gotina «Abd-»ê dest pê dikin, divê wek «Evd-» bêne nivîsîn. Wek: Evdal. Navên ku tê de veqetandeka «-el-, -ul-, -us-,...» hene, divê li gor navan bi xwe yan wek «-il-» yan jî her «-ul-» bêne nivîsîn. Wek: Evdilmitelib, vdilrehman, Evdilsemed, Evdilmecid, Evdilmelîk, Evdilqadir, Evdilxaliq, Evdilxenî, Evdilkerîm, Evdilcebar. Navên ku bi gotina «-lah» dawî tên, divê li gor navan yan wek «-le» yan jî «-la» bêne nivîsîn. Wek:, Kerîmulla, Se'dulla, Evdille û hwd. Navên din jî her li gor bilêvkirina kurdî, wek: Silêman, Ûsiv, Cebar, Setar, Kamil, Feysel, Xalid, Xelîl, Xidir, Kerîm û hwd. Ji bo bilêvkirineke rast ya navên ku tê de dengê «'eyn» hene, mirov dikare vê nîşana han « ' » bi kar bîne.
Wek: «'Îsa, 'Emer, 'Umran, 'Isam, Si'ûd, 'Arif, Ne'man û hwd«.

Herweha divê navên farisî jî li gor alfabeya kurdî bên nivîsîn. Ev jî çend nimûne ne ji navên farisî: Xeyam, Firdewsî, Elî Ekber Vêlayetî, Xamêneî, Xelxalî, Jîla, Hesen Ebbasnejad, Fêreydûn Xosrozadê, Ferîborz Tebatebaîyan, Sîmîn Şahîndost, Jalê, Ehmed Şamlû, Qasimlû, Hesenpûr.

# Îdyomên kurdî

(II)

**Amadekar : Mustafa AYDOGAN**
**Hemîd KILIÇASLAN**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| **agir berra nav wan da:** agir berda nav wan, agir xist nav wan; ew berdan hev | aralarına fitne fesat soktu, başlarını belaya soktu | il a semé la discorde, l'animosité entre eux | he makes mischief (stirs up trouble) between them |
| **a (ya) wî lê hat:** kêsa wî lê hatiye | eline fırsat geçti: şansı yaver gitti | la chance lui a sourit; il a eu de la veine | he was in luck, good luck (good fortune) smiled on him |
| **agir bi erdê xistin:** fesadî belav kirin; | fitne fesat yaratmak; birbirine düşürmek | semer la discorde | make mischief, stir up trouble |
| **aş betal kirin** | faaliyete son vermek | cesser ses activités | to retire, to cease working |
| **av di navbera wan de naçe** | aralarından su sızmıyor | ils sont comme cul et chemise | they are hank in glove, |
| **av reşand gunê wî:** ***1) vala vegerandin, 2) rê li ber biserketinê girtin*** | 1) eli boş çevirmek 2) başarısına engel olmak | 1) renvoyer quelqu'un bredouille, les mains vides, 2) faire échouer être fichu, être perdu, | 1) to send someone away empty handed 2) to fail, to be lost, lost without trace |
| **av û av çûn** | umulmaz bir şekilde yok olmak | disparaître sans laisser de trace | |
| **ava aşekî ji dev çûn;** **ava heft şorbeyan ji dev çûn**: | taacüp etmek, ağzının suyu akmak | être ébahi, baver d'étonnement | to be breathless, gqping with astonishment |

| | | | |
|---|---|---|---|
| pir ecêbmayî man | | | |
| **ava buhurekî** | aynı tarağın bezi | du même accabit, du même bord | the same type, same side |
| **ava serî germ kirin** | başının suyunu ısıtmak, ölümünü hazırlamak | comploter la perte ou la mort de quelqu'un | plot against someone, plot someone's death |
| **avî:** xerîb | ecnebi, yabancı | étranger | foreigner |
| **avî çûn, hawî çûn, ava wan bi cokekê** | kayb olmak | se perdre, s'égarer | to get lost |
| **de naçe:** li hevdu nakin | anlaşamıyorlar | ils ne peuvent pas se sentir | they can't stand one another |
| **axê (derzîyê) biavêjî li erdê nakeve:** pir qelebalix e | iğne atsan yere düşmez; çok kalabalık | foule très dense (où une aiguille ne pourrait toucher terre) | a dense crowd |
| **avêtin paş guhê xwe** | kulak ardı etmek | faire la sourde oreille, négliger | turn a deaf ear, neglect, |
| **ba bi ber guh ketin** | kulağına kar suyu kaçmak, sezmek | avoir vent de quelque chause. | to have wind of something |
| **ba ji ber çûn:** perça wî danîn | yatışmak, sakinleşmek | s'apaiser, décolérer | to calm down, cool down |
| **ba ji te baran ji te** | kendi önerip kendi cayan | qui propose et qui change d'avis | someone who blows hot and cold |
| **ba bi ber ketin** | hava kaçımak, yellenmek | lâcher des vents, péter | to break wind, to fart |
| **barê xwe li tajiyê kirin** | sermayeyi kediye yüklemek, iflas etmek | faire faillite | to go bankrupt, |
| **barê êzingê min** | Nuh deyip peygamber demeyen, inatçı | têtu, tête de bois | stubborn, mule headed |
| **baskê wî sist bûn; tengê wî sist bûn** | yelkenleri suya indirmek | rabattre ses prétentions | toclimb down, to knuckle under |
| **basko kirin** | kolunu kanadını kırmak, güçsüzleştirmek | couper les ailes de quelqu'un, quelqu'un à l'impuissance | hamstring someone |
| **basko nekirin** | fütursüz yalan söylemek, desteksiz atmak | mentir sans vergogne | to lie shamelessly |
| **bav ji hev re çêkirin, bavê hev anîn pêş çavê hev** | birbirini rezil etmek | s'entre déchirer, se couvrir mutuellement de honte | sling mud (or abuse) at one another |
| **bavê hev şewitandin: hevdu perîşan kirin** | anasını ağlatmak | se déchirer, s'entre-déchirer | to tear one another to pieces |
| **bayê sor pê ketin** | eli ayağı tutulmak | avoir pieds et poings liés; êtreto immobilisé par le rhumatisme | be tied hands and feet, to be bed-ridden with rhuma tism |
| **bayê wî bilind e** | havalıdır, fiyakalıdır | il a grand air, il a la superbe | high and might, haughty |
| **bayê wî rabûye** | işleri yolunda | il a le vent en poupe | has the wind in his sails |
| **bayek ji ber serê xwe berdan** | tebdili hava etmek | changer d'air | change of air |
| **bê nan û xwê:** bê wefa | vefasız | infidèle, déloyal | unfaithful, disloyal |
| **bê serberate çûn; bê ser û bê berat çûn; bê ser û şûn çûn** | iz bırakmadan kaybolmak | partir sans laisser de traces; disparaître | to leave will leaving an address, to disappear |
| **bê xwê bûn; bê tam bûn** | tatsız olmak, münasebetsiz olmak | être désagréable, inconvenant | to be disgreable, unsuitable |
| **bê zirav** | ödlek, korkak | lâche, poltron | coward |
| **bê dil** | gönülsüz | involontaire | unwilling, unintentional |
| **belika guhê wî xwê nade** | tınmıyor | ile ne réagit pas; il subit sans réagir | he does not react |
| **(ji yekî re) bêmal bûn** | varını yoğunu biri için feda etmeye hazır olmak | être prêt à se sacrifier corps et âme pour quelqu'un | submits to be ready to sacrifice oneself body and soul for someone |
| **ben bi lingan neketiye;** bê hevsar | kuralsız; ipe sapa gelmez | sans foi ni loi | lawless and faithless |
| **bengî** | kara sevdalı, mecnun | amoureux fou, passioné | madly in love |
| **bencxwarî** | deli, çılgın | fou | mad |
| **benê (benikê) dû şûjinê, benikê dû hebanê:** dûvik | birine ya da bir gruba uyan, tabi olan | qui suit quelqu'un ou un groupe, qui s'adapte aux autres | sameone who follows or adapts himself to a group or to others |
| **benê wî ragirtin, hevsarê wî kişandin** | dizginini tutmak, kontrolü elden bırakmamak | le tenir en laisse, le contrôler | hold in leash |
| **benik di guhê wî de rakirin** | umut vererek oyalamak | tromper en donnant à espérer pour gagner du temps | to deceive by letting the other hope in vain so as to gain time |
| **bûn benîştê devê xelkê, qajikê ser devê xelkê, ketin ser zar û zimanan** | dile düşmek | devenir l'objet de potins | to be subject of gossip |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **benîştê xwe lê nedanîn** | önemsememek | ne pas accorder de l'importance | to attach no importance |
| **benîştê xwe li awakî cûtin** | bildiğini okumak, başkalarını umursamamak | en faire à sa tête | to do whatever he/she wants |
| **beqa dixesîne, kêça dixesîne, sa xwê dike** | kaldırım mühendisi, boş gezenlerin baş kalfası | fainéant, tire-au-flanc | loafer, idler |
| **berdasa xwe fire kirin** | büyük işlere kalkmak, girişmek | entreprendre de grandes actions, étendre son champ d'action | undertake major operations widen his field of action |
| **(wek) berê li nav heriyê dayî, wek gula bihelînî kêb** | (söz için) lop diye yerine oturmuş | (parole) qui fait mouche | hits the nail on the head |
| **bergiya devê xwe nezanîn** | patavatsız olmak, ne dediğini bilmemek | être impertinent; tenir des propos inconsidérés | cheeky, to express irresponsible ideas |
| **berxê ber gelek maka; çaralîxur (çaralîxwer)** | oportünist, ilkesiz, çıkarcı, her tarafta çıkar arayan | opportuniste, qui mange à tous les rateliers | opportunist plays both ends against the middle |
| **bêtarê wî di xizna wî de be ; bela wî li ber derê wî be, bela wî jê re be** | belası kendisine kalsın kimseye bulaşmasın | que sa colère, sa nuisance l'emporte lui-même | carred away by his anger |
| **bêtar** | müsibet, bela | calamité, desastre | disaster, calamity |
| **bêvil hatin, kirr hatin, kirr rabûn, kurm hatin kurmê cixarê hate wî** | kurtlanmak, canı sigara içmek istiyor | avoir envie de; céder à une envie ou à une habitude il a une forte envie de fumer | give way to (a habit, a desire) he has a strong urge to smoke |
| **bêvila (pozê) xwe daleqandin; bêvila xwe kirin** | alınmak | s'offusquer | to take offense |
| **bêvil neşewitîn** | utanmamak,sıkılmamak | ne pas avoir honte, être effronté, être sans gêne | be shameless inflict a punishment |
| **bêvila yekî firikandin, gemirandin, mizdan** | burnunu sürtmek, dersini vermek, haddini bildirmek | infliger une punition, humilier | humiliate |
| **bêvilbilind, kepîbilind, pozbilind, difinbilind, difinqilû, lûtberz** | burnu havada, kibirli | hautain | haughty, nose-in the air, conceited |
| **bi agirê yekî şewitîn; di agirê yekî de şewitîn (sotin)** | ateşine yanmak | subir un préjudice à cause de quelq'un d'autre | to suffer damages or harm because of someone else |

# Ferhengoka *Roja Nû*
(II)

Amadekar : Hemîd KILIÇASLAN

| **kurdî** | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| **adinê rojê**: roja din | ertesi gün | lendemain | the day after |
| **arsimî,** bahorî, bapêşî, | nezle | enrhumé persîvî | to have a cold |
| **avdak**, hevdeyek, tayek | tel (saç teli) | cheveu | hair |
| **axpîne**; turabêlk, tirabêlk | ufalanmış toprak, | limon | alluvium |
| **bafûr** | tiryak | | |
| **bedenparêzî** | bedeneğitimi | éducation physique | physical training |
| **bêkêr** | işe yaramaz | vaurien | good for nothing, rascal |
| **berger,** *n.m.* | yalvarma, yakarma | supplication, prière | prayer |
| **berger,** *n.* | vasi, aracı, bakıcı | héritier, intermédiaire | heir |
| **bergor**, alîgor | kıble duvarının oyu-arak ölünün defne-dildiği mezar türü | tombe musulmane où le mort est placé dans une cavité pra-tiquée dans le mur tourné vers la Mecque | Moslem tomb inhere the body is placed in a cavity dug into a wall turned towards Mecca |
| **betar;** bêtar | afet, musibet | désastre, calamité | calamity, disaster |
| **bîna** | gören | qui voit, voyant | sighted person |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **nebîn,** kor, nebîna | görmeyen, kör | non voyant | blind, unsighted |
| **nepenîn** | saklamak, gizlemek | dissimuler, cacher | to hide, to conceal |
| **nepenî** | gizli, görünmeyen, saklı | secret, dissimulé, invisible | hidden, secret, invisible |
| **nimandin** | temsil etmek, göstermek | représenter | to represent |
| **bizdonek** | korkak, ödlek | poltron, peureux, froussard | coward, fearful |
| **çilpandin** | çırpmak, çalmak | chaparder, voler | to pinch, to steal |
| **çarçik** | kare | carré | square |
| **çavteng** | cimri, hasud | avare, envieux | miser |
| **çêrî**; çêlî | yavru | petit, enfant | the young (of an animal or bird), child |
| **çeng bûn** | fırlamak | 1) bondir, 2) se précipter | 1) to fly out, to leap out, 2) to rush |
| **çepel** | kötü, iğrenç, rezil | infâme, odieux, vil, dégoûtant | disgusting, vile, infamous |
| **çîçik**; çûk, çivîk, çûçik | kuş | oiseau | bird |
| **çito**; çawan, çilo, çere, çitil | nasıl | comment | how |
| **dêmanî** | yerleşik | sédentaire | sedentery, settled |
| **derûd**, derhûd | kefil | garanteur, caution | garantor |
| **bi dest û lepan şer kirin** | silahsız, tekme tokat kavga etmek | en venir aux mains | |
| **destvala** | eliboş | à mains vides | empty-handed |
| **han, hawar** | imdat | appel, secours | help, aid |
| **hatin hana** an hawara yekî | birinin imdadına gelmek | venir au secours de quelqu'un | to come to the help (assitance) (of) |
| **duryan** | kavşak, yol ayırımı | carrefour | crossroads |
| **gî, gişt, hemî, hemû** | hepsi, tümü | tout, tous, totalité | all, the whole |
| **henzel:** *petîşok* | Ebu Cehil karpuzu | variété de pastèque sauvage amère | wild and bitter water melon |
| **hêvişandin** | esirgemek, tasaruf etmek | épargner | to save, to spare |
| **hilgivîn** | kaldırmak, yükseltmek | soulever | to lift |
| **hûtin**: hewtin | havlama | aboiement | bark |
| **manegî** | soylu at | cheval pur sang | thorough breed |
| **mirêkar**; minêkar | arzulu, istekli | désireux, aspirant | eager, desirous, longing |
| **pêçek**, qumatk | kundak | lange | nappy |
| **pelasekî kerkît** | el tezgahında dokunmuş kilim | tapi tissé avec un métier manuel | hand woven carpet |
| **pêmende** | yoksun | privé, depourvu | deprived |
| **pevçûn** | kavga | querelle, bagarre | quarrel, fight |
| **qelûnbesk**, sibîl, qelûn | pipo | pipe | pipe |
| **qulix** | nöbetçi | gardien, veilleur | watchman, guard |
| **rageşî** | hırçınlık | | |
| **serhişkî** | kalınkafalılık | entêtement | stubbornness |
| **sipîsax** | sapasağlam | robuste, en bonne santé | in good health robust |
| **sîsik**, dendik | çekirdek | noyau | nucleus, kernel (of a nut) |
| **solbend, nalbend** | nalbant | maréchal-ferrant | blacksmith |
| **şihîn**, mêzin | terazi | balance | scales |
| **tejber** | mefruşat | meuble | furniture |
| **tertepêl** | doktor muayenesi | auscultation | auscultation |
| **veniştin** | tünemek | se percher | to perch |
| **veparimandin** | titremek, silkelenmek | frissonner, frémir | to quake, to shudder, shiver |
| **zaye** | (onların) ürünleri | produit, progéniture | offspring |


simbêl**palik**


simbêl**qeytan**


simbêl**tûj**


simbêl**badayî**


simbêl**mûç**, simbêl**pîv**, simbêl**mişk**


simbêl**şor**


simbêl**pîj**


simbêl**beran**


simbêl**gustîl**, simbêl**xelek**


simbêl**qelem**


simbêl**xiştik**


simbêl**nivişt**


simbêl**tapan**


simbêl**bor**


simbêl**sivnik**, simbêl**gêzî**


simbêl**gergerî**


simbêl**zeytûnî**


simbêl**jûjî**

# *Termên aborî*

(II)

Amadekar : Salim ÇELIKER

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| **mezinbûn** | büyüme | croissance | growth |
| **lez** | hız, sürat | vitesse | speed |
| **leza mezinbûnê** | büyüme hızı | vitesse de croissace | speed of growth |
| **nisbet** | oran | taux | rate |
| **nisbeta mezinbûnê** | büyüme oranı | taux de croissance | rate of growth |
| **belavkirin** | dağıtım | distribution | distribution |
| **hatinî, hatin** | gelir | revenue | income |
| **hatiniya kêm** | dar gelir | faible revenue | low income |
| **hatiniya bilind** | yüksek gelir | haut revenue | high income |
| **guhêrbar** | değişken | variable | variable |
| **teraz** | denge | équilibre | balance |
| **bi teraz** | dengeli | équilibré | balanced |
| **bê teraz** | dengesiz | déséquilibré | unbalanced |
| **butçeya biteraz** | denk bütçe | budget équilibré | balanced budget |
| **terazname** | bilanço | bilan | balance sheet, assessment |
| **dewletgîrî** | devletçilik | étatisme | statism |
| **dewletgîr** | develtçi | étatiste | statist, partisan of state control |
| **Rêxistina Plankirinê ya Dewletê** | Devlet Planlama Teşkilatı | Commissariat national du Plan | State Planing Organisation |
| **gerr** | dolaşım | circulation | circulation |
| **gerra xwînê** | kan dolaşımı | circulation sanguine | circulation of the blood |
| **gerra mal** | mal, eşya dolaşımı | ciculation des marchandises | circulation of the goods |
| **bacên yekser** | dolaysız vergiler | impôts directs | direct taxes |
| **bacên neyekser** | dolaylı vergiler | impôts indirects | indirect taxes |
| **rawestîn** | durgunluk | stagnation | stagnation |
| **rawestîna aborî** | ekonomik durgunluk | stagnation économique | economic stagnation |
| **siyaseta aborî** | ekonomi politikası | politique économique | economic policy |
| **aborînas** | iktisatçı | écnonomiste | economist |
| **kar** | 1) iş, 2) kazanc, kar | 1) travail, occupation, 2) profit, bénéfice, | 1) work, labour, job, 2) profit, benefit |
| **karker** | işçi | ouvrier | worker, workman |
| **kardar** | çalışan | qui a un emploi, salarié | employed worker |
| **karmend** | memur | employé, fonctionnaire | employee, civil servant |
| **karbidest** | yönetici | dirigeant | official, ruler, leader |
| **kardêr** | işveren | employeur | employer |
| **xebitandin** | çalıştırmak, işletmek | employer, faire travailer | to employ |
| **xebitandin** | çalıştırma, işletme | action d'employer, emploi | employment |

# *Devoka Qerejdaxê*

(IV)

Amadekar : Mahmûd LEWENDÎ

| **kurdî** | **tirkî** | **fransizî** | **îngilîzî** |
|---|---|---|---|
| **kem** | kısa, kesik | court, coupé, tronqué, amputé | short, cut, truncated, amputated |
| ***Ez poz jêkim kemo ye, ez guh jêkim kerro ye, bêar bêarê herro ye*** | | | |
| **kem kirin** | kısaltmak, (saç, tüy v.s. gibi şeyleri) kesmek | écourter, racourcir, tronquer, amputer | to shorter, to truncate, to amputate |
| **kerrax,** çırpan | tarla, bağ ve bostan sulamada su tevziatçısı | personne chargée de la répartition de l'eau dans l'agriculture et l'horticulture | person responsable for distribution of irrigation |
| **kerdî**, kertik | ark, evlek,ya da karığın sırt kısmı | bordure d'une rigole d'irrigation | bank of an irrigation channel |
| **kerge**, kergan | 1) üzüm kaynatma kazanı, 2) bağ bozumu dibeği | 1) grand chaudron utilisé pour faire bouillir le jus de raisin, 2) grand mortier de vendange pour presser le raisin | 1) cauldron for boiling grape juice 2) vine press |
| **kerkere** | iriyarı, iriyarı kimse | corpulent, massif, armoire à glace | corpulent, big-bodied, stocky |
| **kerme**, dirg | ahırlarda kurumuş gübre, kesek | engrais animal formé dans l'étable | manure |
| **kerkon** | eski kıl çadır parçası | pièce d'étoffe de tente en poils | |
| **kertal** | kurumuş kenger | chardon seché | dried thistle |
| **keramper**: kerengper: | kurumuş diken | | |
| ***stirî û qirş û qalên hişk*** | | | |
| ***kerempero bi kû de ? Ba bi kû de bibe !*** | | | |
| **keskûsor**, keskesor, heftreng | gök kuşağı | arc-en-ciel | rainbow |
| **keşîş, keşe, qeşe** | papaz | prêtre | priest |
| **reben** | rahib | moine | monk |
| **metran** | piskopos | évêque | bishop |
| **kevn û kot**; kerkot | kırık dökük, eski püskü | vieillerie, antiquaille, friperie | second hand objects or clothes |
| **kewaşe**, kewî | kurumuş ot, dal, çalı çırpı gibi şeyler | brindilles sèches | dry sticks, thorns, or twigs |
| **kewişandin** | budamak | tailler, émonder | to trim, to prune |
| **kêlik**, kêl | mezar taşı | pierre tombale | tomb stone |
| **kêrt**, kart | 25 kuruş değerindeki para birimi | pièce de monnaie turque de 25 kurus; quart de livre | Turkish 25 kurus coin, quarter of a lira |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **kêsrek**, kêsek, kêstig, kêstil, kestek, guntil, şel | kesek | motte de terre | clod, lump of earth |
| **kêş, nm** | serkeş, külhan beyi | voyou, racaille, canaille | rowdy, bully |
| **kêş, nf.** | kuyruk, ard arda sıraya girme | queue (en file indienne) | queue |
| **kidê kidê**, gidê gidê | oğlağa seslenirken kullanılan sözcük | locution utilisée pour s'adresser aux agneaux | expression used for calling or adressing lambs |
| **kidik**: karikê biçûk | yeni doğmuş oğlak | l'agneau qui veint de naître | new-born lamb |
| **kijole**; qirş, qirjik | kirişlerin üzerine serilen çalı çırpı gibi şeyler | brindilles étalées sur les poutrelles pour couvrir le toit de maisons traditionnelles | twigs placed over roof beams for thatching a house |
| **kilandin** | yayık yaymak | baratter | to churcn (milk) |
| **kil,** *nm* | sürme | khol, hohol | kohl |
| **kil kirin**, kil dan, **kil kişandin** | sürme çekmek | mettre du khol autour des yeux | putting kohl round the eyes |
| **kil,** *nm* | sallama | action de balancer | swinging |
| **kil kirin**, kil dan | sallamak | balancer, secouer | to swing, to shake |
| **kiraşo** | çamaşırcı | blanchisseuse | washerwoman |
| **kirênek**, kikirk, kirkirîk, kirtik | kıkırdak | cartillage | cartillage, gristle |
| **kirifandin** | kıtır kıtır yemek | croquer | to crunch, to eat with a crackling noise |
| **kitanbelaş**, belaş, malbelaş | keten bezi | tissu en lin grossier | rough linen cloth |
| **kivil** | hayvan postu | peau d'animal | undressed skin |
| **kix** | (çocuk dilinde) pis, kötü şey, kaka | (dans le language enfantin) vilain,sale, mauvais | nasty, dirty (child talk) |
| **kixs**, kixsik | soğan arpacığı | échalotte | shallot, sping onion |
| **kiz** | yanık yün kokusu | odeur de laine brûlée | smell of burnt wool |
| **kizin** | burçak | cesse | common vetch |
| **kizirandin** | 1) tütsülemek alazlamak, 2) kazandibi olmak, tencere dibinin tutuşması | 1) flamber (une volaille), brûler (poils, cheveux) 2) attacher, coller (pour une marmite) | 1) singe (feathers or hair), 2) stuck (to bottom of cooking pot) |
| **koçek** | köçek, iyi oynayan | danseur | dancer |
| **kodik** | ağaç yada topraktan yapılmış kab | écuelle, en sébile, bol en bois ou terre cuite | porringer, wooden bowl |
| **kodika parsê** | dilenci çanağı | sébile du mendiant | begars' alms bowl |
| **kodika şivanan** | çoban çanağı | écuelle du berger | shepherd's bowl |
| **kîp kirin** | kenetlemek, oturtmak yerleştirmek | cramponner, lier fortement | to cling tightly, to bild tightly |
| **kokim** | kocamış, çok yaşlı kimse | vieillard,e | very old person |
| **kolke:** çûkeke wek beraşe ye sînga wê deqdeqî ye | | | |
| **kolm**, korm, lak, **darîn**, hewdik, qafik | köpek yalağı | auge (pour chiens) | feeding bowl (for dogs) |
| **kone** | kurnaz | rusé | cuny |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **korx**, cirn, conî, cunî | oyuk taştan dibek, kurna | grand mortier en bois ou en pierre | large wooden or stone mortar |
| **kosre**, kosere, berê kartîk | bir cins zimpara taşı | eméri | |
| **kobe** | kadın giysilerinin kenarlarına başka bir kumaş parçası ya da danteli dikme yoluyla yapılan işleme. | | |
| **koval** | sarmal, helezonik | spiral, hélicoïdal | spiral, helicoidal |

# Ferhengoka **Hawarê**

*(II)*

Amadekar : Zinar SORAN

| **kurdî** | **tirkî** | **fransizî** | **îngilîzî** |
|---|---|---|---|
| **bandev**, miştî | kar fırtınası | tempête de neige | snow storm |
| **berpê kirin** | sunmak, arz etmek | présenter | to present |
| **berwar** | yamaç | versant, flanc | slope, side (of a hill) |
| **berweq** | bir çeşit tüfek | une sorte de fusil | a kind of gun |
| **bîşeng**, şêngebî, şorebî | salkım söğüt | saule pleureur | weeping willow |
| **bijandin** | arzu etmek, iştahı çekmek | désirer, avoir envie de | to desire, to want sth. |
| **çêlî** | yavru | petit (d'un homme ou d'un animal) | young (human or animal) |
| **daketî** | ahfad, torun | descendant | descendant |
| **fêlçakî**: kiryara baş | iyi fiil | bonne action | good turn, good deed |
| **gurmijîn** | kükremek | rugir (lion) | to roar |
| **gurmist**, kulmist, kulm | yumruk | poing | fist |
| **gizing** | şafak | aube (du jour) | dawn |
| **hingura êvarê** | magrib | crépuscule | twilight, dusk |
| **hûrbijarî** | özenle | avec soin, attentivement | carefully |
| **keşaf** | izci | scout | boy scout |
| **kundayî** | işlenmiş sırmalı | brodé (de fil d'or ou d'argent) | gold or silver embroi-dered |
| **kutefir** | selva kuşu, bıldırcın | caille | quail |
| **lêz** | kul, köle | esclave | slave |
| **lûç** | hile, oyun | ruse, tricherie | trick, cheating |
| **pêrû**, bist, pêwr | Süreya yıldızı, ülker | Pléiades | the Pleiades |
| **piştdawî** | kıyamet | jour du Jugement dernier | Doomsday, Last Judgement |
| **qerepûşî** | kara puşu | voile noir | black veil |
| **qunders, qunederz,** *nf* | iğne ardı | point amère | backstitch |
| **zûxal**, zûhêl, *nf* | makas ağzı, artık, bez yada kumaş parçası | | |
| **qurç**, qurt, *nf* | su yudumu | gorgée d'eau | mouthful (of water) |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **qurçandin**, daqurtandin | yutmak | avaler | to swallow |
| **çavqurçkirin**, çavqurçandin | göz kırpma | clignenent des yeux | twinkling |
| **çav qurçandin,**<br>çav qurç kirin | göz kırpmak | faire de l'œil,<br>cligner de l'œil | making eyes, winking<br>(at s.o.) |
| **rawes** | durak | arrêt | stop |
| **reşiş**, rişêşk | kısa süreli hafif<br>yağmur | pluie fine de<br>courte durée | |
| **şapat** | kısa süren serpinti | petite pluie de<br>courte durée | birds nest build<br>with stones |
| **şapato** | havaya göre yer<br>değiştiren, fırsatçı | opportuniste | opportunist |
| **sehgura sibê, sewgurî** | alaca karanlık, fecir | entre chien et loup | at dusk, at twilight |
| **sergevaz: rêber, mezin** | lider, büyük | leader, chef | leader, chief |
| **serheng** | albay | colonel | colonel |
| **solîn**, *nf* | 1) gonca, 2) çiçek<br>tarlası, 3) taşlar-<br>la yapılmış kuş<br>yuvası, 4) künk | 1) boufon (de fleur),<br>2) champs de fleurs,<br>3) nid d'oiseau gravé<br>sur la pierre, 4) con-<br>duite d'eau en terre | 1) bud, rose bud,<br>2) field of flowers,<br>3) bird nest graved<br>on stone,4) earthen-<br>ware water pipe |
| **stiwar** | sabit, sağlam | robuste, solide | robust, solid |
| **şemirandin** | 1) terk etmek, bırak-<br>mak 2) uyuşturmak | 1) abandonner,<br>2) engourdir | 1) to give up, to aban-<br>don, 2) to (be) numb |
| **xew lê tewirîn** | uykusu kaçmak | avoir du mal à dormir,<br>perdre le sommeil | to be unable to sleep<br>to loose one's sleep |
| **totik**; tutuk, qelefîsk,<br>tondik, kundkî, qilûzk | çömelme | accroupissement | squatting, crouching |
| **tût vedan** | çömelmek | s'accroupir | to squat, to crouch down |
| **vekît** | dikte | dictée | dictation |
| **vekîtandin** | dikte etmek | dicter | to dictate |
| **vemaltin** | çevremek | retrousser les<br>manches | to roll up one's sleeves |
| **vemiştin, şûştin** | yıkamak | laver | to wash |
| **dest vemiştin,** | el yıkamak, | s'en laver les mains, | to give up, to wash<br>one's hands (of s.th) |
| **dest jê şûştin** | umudunu<br>kesmek,<br>vaz geçmek | renoncer | to give up,<br>to wash one's<br>hand of sth. |
| **warkoz**, alkoz | kışlak | campement d'hiver<br>(for animals,<br>(pour nomades) | winter quarters<br>nomads or an army) |
| **werşeq** | vaşak | lynx | lynx |
| **werihîn**, weşîn, werîn | dökülmek, düşmek | tomber (feuille, cheveu) | to fall (hair, leaves) |
| **xaf, haf**, diyar | görünüm, görme,<br>huzur | en vue, à la vue | in view of |
| **çûn xafa (hafa) yekî** | birini ziyarete<br>gitmek | rendre visite à<br>quelqu'un | to pay a visit to s.o. |
| **xwestî** | sözlü | promise | engaged to be<br>married |
| **zandûr** | dehliz, oyuk | corridor | corridor |
| **zemberîş**, balîv, balgî | yastık | oreiller | pillow |
| **zikmakî** | fitrî, doğuştan olan | congénital | congenital |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **zimag**, nizar, keresî | güneş görmeyen yamaç | versant ne recevant pas le soleil | sunless slope |
| **zîvar**, hejar | yoksul | indigent, pauvre | indigent, poor, needy |
| **zomp**, mirc, geran | balyoz | masse, casse-pierres | sledge hammer |

# KEVIRÊN BIHADAR

Amadekar: Reşo ZÎLAN

Kevirên bihadar : (î) Gem, gemstone, (t) kıymetli taşlar

Berî her tiştî pêdivî ye, ku em piçekî li ser peyva **kevir** rawestin. Ji ber ku peyva **kevir**, di zaravayê kurmancî de, di hindek devokan de bi maneya zinar e, ango tehtekî mezin û qerase ye. Di cîhê peyva **kevir** de, ew peyva **ber** bi kar tînin. Ne bi tenê di hin devokên kurmancî de, lê di zaravayên din yên kurdî de jî ji bo peyva **kevir**, peyva **ber** tête bi kar anîn. Bo nimûne: bi zazî **ber**/**bere**, bi soranî, feylî, lorî û lekî **berd**. Vêca heçî peyva **ber** e, ji bilî maneya **kevir**, di kurmancî de xwedî çend maneyên din e jî. Wek: 1.fêkî, meywe; semere, 2.nekêmber, biber, 3.pêş, 4.rû, 5.hindav, îstiqamet, 6.dên (dîtin), temaşe û hwd. Ji bo ku em ji vê tevliheviyê bi dûr kevin, me çêtir dît ku em peyva **kevir** wek forma sereke bi kar bînin.

Ji milekî din ve, mirov dikare di şûna **kevirên bihadar** de, herwekî ku di klasîka kurmancî ya Memê Alan de jî hatiye 'emilandin, **kevirên gewher** jî bibêje.

Kevirên bihadar li gor cîhên ku ew lê têne bi kar anîn, dibin 3 tof:
1. Yên ku wek xişir, xemil û xêz, têne bi kar anîn, 2. Yên ku wek derman û herweha ji bo armancên hunerî û teknîkî têne bi kar anîn, 3. Yên ku ji bo alavên navmalê, kinc, mobîlya, tablo, xemil û dekorasyonên mîmarî têne bi kar .

Ji bilî vê, ew li gor şefafbûna xwe jî dibin çend tof:
1. Tamşefaf, 2. Nîvşefaf, 3. Neşefaf
Kevirên bihadar ji aliyê hişkbûna xwe ve jî dibin 3 tof:
1. Hişk, 2. Nîvhişk, 3. Nerm
Di sîstema senifandina kevir bihadar de, nirx û bihayê kevirên zînetê, li gor hişkbûn, taybetmendiyên optîkî û herweha li gor peydabûna wan têtê tesbît kirin. Gewher yan jî kevirên bihadar ji kevirên zînetê yên dereceya 1, 2 û 3yan, lê kevir nîvçebihadar jî, ji kevirên zînetê yên dereceya 4 û 5an têne hesêb. Ev yeka han jî bûye sedema ku ew di sê tofan de bêne bi nav kirin:
1. Kevirên bihadar, 2. Kevirên nîvçebihadar, 3. Kevirên xemlê

Lê zanista nûjen ya kevirên bihadar bi vê senifandinê ne qayîl e. Ew hemû mîneral û kevirên ku ji bo xemlûrêzê têne bi kar anîn, wek kevirên bihadar bi nav dike. Ji lewra jî wê dike 2 tof:
1. Kevirên bihadar yên mîneral
Ku ev jî ji van koman pêk têt: 1. Element, 2. Sulfîd, 3. Halojenîd, 4. Oksîd, 5. Karbonat, 6. Sulfat, 7. Fosfat, 8. Sîlîkat, 9. Terkîbên organîk.
2. Kevirên bihadar yên ne mîneral.

| **kurdî** | **tirkî** | **fransizî** | **îngilîzî** |
|---|---|---|---|
| **almas** (=elmas, almast) (yûnanî : adamas) | elmas | diamant | diamond |
| almasa reş | kara elmas | diamant noir | black diamond |
| almasa traşkirî | yontulmuş elmas | diamant taillé | cut diamond |
| almasa sertîrkî (=almasa peykanî) | okucu biçiminde yontulmuş elmas | diamant taillé en forme de flèches | a kind of dimonds in the shape of arrow-heads |
| almasa xaldar (=almasa bixal) | benekli elmas | diamant tacheté | a diamond with ablack or red mark (worthless) |
| almasa şîrîn (=elmasa nebatî) | | | a kind of diamond |
| almasa xam | işlenmemiş elmas | diamant brut | unpolished diamond |

| | | | |
|---|---|---|---|
| **korûnd**: (sanskrîtî kuruvinda) | korindon | coridon | corundum |
| **yaqût** (=aqût) (yûnanî: yakothos) | yakut | rubis | ruby |
| yaqûta şîn | gök yakut, safir | saphir | blue gem, saphire |
| yaqûta zer | sarı yakut | topaze | yellow gem, topaz |
| yaqûta mor (=yaqûta binevşî) | mor yakut | améthyste | amethyst |
| yaqûta le'l | lâ'l yakut, grena | grenat | garnet |
| yaqûta sor | kırmızı yakut | rubis | red gem, ruby |
| yaqûta Îskenderî | İskender yakutu | rubis d'Alexandre | precious stones gathered by Alexander's compa-nions when retuning from the regions of darkness |
| yaqûta hinarî | nar regi yakut | rubis couleur grenade | pidgeon blood ruby |
| yaqûta seyyal | seyyal yakut | rubis de première eau | ruby of fine water |
| yaqûta nerm | yumuşak yakut | | poorer kind of precious stone |
| yaqûta kesk | yeşil yakut | saphire vert | green saphire |
| yaqûta pembe | pembe yakut | rubis rose | pink ruby |
| yaqûta erxewanî [padparadscha] : (sanskrîtî) | erguvan regi yakut | rubis pourpre | purple ruby |
| yaqûta porteqalî | turuncu yakut | saphire orange | orange saphire |
| yaqûta spî | beyaz yakut | saphire blanc | leukos saphire |
| yaqûta xam | işlenmemiş yakut | rubis brut | unpolished ruby |
| le'l | lâ'l | rubis, grenat | ruby |
| le'la abdar (=le'la xoşav) | lâ'l-ı hoşab | rubis de 1ère eau | a most brilliant ruby |
| le'la pîvazî | | rubis rouge et blanc | a kind of red and white ruby |
| le'la sertîrkî | ok ucu şeklinde oyutulmuş yakut | rubis forme de tête de fléche porté en boucle d'oreille | a ruby of the shape of an arrow-head worn as an eaning |
| le'la doşabî (=le'la doşavî) | şurup renkli yakut | rubis couleur de syrop | a syrup - coloured ruby |
| le'la rehdar | kusurlu yakut | rubis ayant un défaut | a ruby with a flaw or defect |
| le'la nab | lal-ı nab | rubis lustré | lustrous ruby |
| le'la qulnekirî (=le'la kunnekirî/nesimtî) | delinmemiş yakut | rubis non percé | undrilled ruby |
| le'la yaqût | la'l yakut | grenat | garnet, carbuncle |
| lûlû (lû'lû') | inci | perle | a pearl |
| lûlûya meknûn | kabuğunda saklı inci | perle caché dans sa coquille | a pearl concealed in its shell |
| lûlûya munezzed | seçkin inci | perle en vue, espacée | pearls neatly strung |
| lûlûya şehwer | şahane inci | perle royale, très précieuse | a pearl worthy of a king, very precious pearl |

| | | | |
|---|---|---|---|
| durr | inci | perle | pearl |
| durra 'Edenî | Aden incisi | perle d'Aden | pearl of Aden |
| durra giranmaye | büyük ve değerli inci | perle précieuse | precious and big pearl |
| durra xoşav | şefaf inci | perle de belle eau | fine pearl |
| durra menzûm | düzenli inci | perle régulière | strung pearls |
| durra meknûn | kabuğunda saklı inci | perle caché dans sa coquille | hidden pearl in its shell |
| durra nab | parlak beyaz inci | perle blanche brillante | shining white pearl |
| durra qulnekirî (=durra hunnekirî/nesimtî) | bakire inci | perle vierge, non percée | virgin pearl, unbored pearl |
| durra nefîd | inci dizisi | rangée de perles | a string of pearls |
| durra sedefnîşîn | sedefte saklı inci | perle lovée dans le nacre | a pearl which is still in its mother of pearl |
| durra semîn | iri ve değerli inci | grosse perle pressieuse | precious pearl |
| durra sîrab | iri inci | grosse perle | large pearl |
| durra şehdane | çok iri inci | très grosse perle | very large pearl |
| durra şehwer | şahane inci | perle royale, magnifique | magnificent pearl |
| durra yêgane | eşsiz inci | perle sans pareille | a matchless pearl |
| durra yekdane | ender inci | perle rare | rare pearl |
| durra yekta | ender ve değerli inci | perle rare et très précieuse | rare pearl, pearl of great price |
| durra yêtîm | öksüz inci | perle solitaire, rare | rare pearl |
| pîroze (=pîrozank) | firuze, türkuvaz | turqoise | turquoise |
| mircan (=mercan) | mercan | corail | coral |
| mircana reş | siyah mercan | corail noir ou mort | black coral |
| sedef | sedef | nacre | mother-of-pearl |
| mirarî (=merwarî, megrît) | inci | perle | pearl |
| zimrûd | zümrüt | émeraude | emerald |
| 'eqîq (=heqîq) | akik | agate | agate, carnelian |
| 'eqîqa Yêmenî | akik-ı Yemeni | agate du Yémen | carnelian from Yemen |
| topaz: (sanskrîtî: tapas) | topaz | topaze | topaz |
| topaza spî, şîn, zer, porteqalî, qehweyî, kesk, pembe | betyaz, mavi,sarı, turuncu, kahve, yeşil, pembe topaz | topaze, blanc, bleu, jaune, orange, maron, vert, roze | |
| zergûn: (farisî: zerdgoon) | zirkon | zircon | zircon |
| kehrîbar (=karîban) | kehribar | ambre | amber, yellow |

| | | | |
|---|---|---|---|
| kehrîban, kahreban, karban) | | | amber |
| kevirê Oltîyê =berê Oltîyê, kevirê Erzeromê, kehrîbara reş | siyah kehribar, kara amber, Erzurum taşı, Oltu taşı) | ambre noir | amber black |
| kevirê Silêmanî | damarlı akik | onyx | onyx |
| kevirê lûle | Eskişehir taşı, lüle taşı | meerschaum | |
| qîlê fîlan (=kêlbeyê fîlan) | fildişi | ivoire | ivory |
| billûr (=krîstal, belor, belûr) | kristal | cristal | crystal |
| berzîvk (Kevirekî reş î wek yê Oltîyê ye) | | | |
| metalên bihadar | kıymetli metaller | métaux précieux | precious metals |
| zêr | altın | or | gold |
| zêrê zer | sarı altın | or jaune | yellow gold |
| zêrê spî | beyaz altın | or blanc | white gold |
| zîv | gümüş | argent | silver |
| platîn | platin | platine | platinum |

**Çend peyvên ku bi pêşekariya kevirên gewher ve peywendîdar in :**

| | | | |
|---|---|---|---|
| almastraş (= elmastraş) | elmas yontucusu | diamantaire | diamond cutter |
| traştin, traş kirin (=daterişîn) | yontmak | tailler | to cut |
| traştin, traşkirin (=daterişandin) | yontma, yontmak | taille | cutting |
| li ser şuxilîn, li ser kar kirin | işlemek | incruster | to encrust, to inlay |
| liserşuxilîn, liserkarkirin | işleme | incrustation | inlaying |
| ’eyar, ’iyar | ayar | carat | carat |
| zîvker | gümüşçü; gümüş işleyen | orfèvre, spéci- aliste d’argenterie | silversmith |
| zîvkerî | gümüşçülük; gümüş işlemeciliği | argenterie | silverware |
| zîvfiroş | gümüşçü, gümüş satan | marchand d’ob- jets en argent | silver jewelry merchant |
| zêrker | kuyumcu; altın işleyen | orfèvre en bijoux d’or | goldsmith gold jewelry |
| zêrkerî | kuyumculuk; altın işlemeciliği | orfèverie de bijoux d’or | gold ware gold jewelry |
| zêrfiroş | kuyumcu, altın satan | marchand de bijoux d’or | gold jewelery merchant |